

پەناخوازانی کورد لە بەریتانیا بە گلەیین
"هانمان دەدەن تاوان بکەین"

5 ◀



لە کوردستان
شۆفێرە پیاوەکان پۆلیسی ژنیان قبوڵ نییە

16 ◀


# Rûdaw

ÇAPA EWRÛPA

Xwînerên Rûdawê bêtir dizanin


HEVPEYVÎN

Şaredarê Sûrê, Abdullah Demîrbaş:
**Em ne desthilatdar, lê xizmetkarên gelê xwe ne**

Di rûpela 11'an de

**Deutschland 1,50 Euro** | Nederland, Belgique, France 1,50 Euro | Schweiz 2,70 CHF | England 1,40 GBP | Sverige 21,00 SEK | Danmark 15,00 DKK

**Hejmar / Nr. 47** | 1 Hezîran / Juni 2010 | **www.rudaw.net**

Berlingske Tidende, ROJ TV tewanbar dike:
## "Zarokan dehfî nav refên PKK'ê dike!"



(Wêne: Metin Yüce / Ji rojnameya Berlingske Tidende)

**Rojnameya Danîmarkî, Berlingske Tidende vî weneyî wekî yek ji belgeyên ji bo "hebûna zarokan di nav Gerîllayên PKK'ê de" bi kar tîne**

Rojnameya mûhafezekar-lîberal ya Danîmarkî Berlingske Tidende ev çend roj in bi hevkariya Rêvebirê Berê yê ROJ TV Menuçêhr Zonûzî hinek raportan derbarê ROJ TV û PKK'ê de diweşîne û ROJ TV tewanbar dike ku ew "piştgiriya terore" dike û "zarokan dehif dide ku tevlî Gerîllayên PKK bibin." Weke belge jî rojnameya navborî daxuyaniyên Zonûzî û wêneyên di destê wî de diweşîne.

ROJ TV:
## Rêvebirê berê li tolhildanê digere



(Wêne: Metin Yüce / Ji rojnameya Berlingske Tidende)

**Birêvebirê Berê yê ROJ TV Zonûzî bi bikaranîna pereyen tevevizyonê ji bo berjewendiyên şexsî tê tewanbarkirin**

Yek ji Rêvebirên ROJ TV, Şakir li ser van tawanbariyan ji Rûdawê re eşkere kir ku ti pêwendiya wan weneyên çapkirî û ROJ TV bi hev re nîne û ev kampanyayek ji bo reşkirina ROJ TV ye û di bingeha xwe de ev hewla tolhildana Rêvebirê Berê yê ROJ TV Menuçêhr Zonûzî ye, ku ji ber xwarina 200 hezar Kronên Danîmarkî yên ROJ TV ji rêvebiriya televizyonê hatibû dûrxistin. ▶ 2

## AI ji Başûrê Kurdistanê jî ne razî ye

Rêxistiya Lêborîna Navnetewî (Amnesty International) rapora xwe ya salane belav kir û tê de behsa binpêkirinên mafên mirovan li gelek welatên dinyayê kir. Derbarê Tirkiyê rapor eşkere dike ku kêm pêşketin pêk hatine. Li ser Îranê AI dide xuyakirin ku di sala borî de bi hezaran kes hatine girtin û îşkence kirin, herwiha gotiye ku di warê darvekirina welatiyên xwe de, Komara Îslamî di rêza pêşiyê de ye. Al li ser Hikûmeta Sûriyê jî dibêje ew berdewam nerînên berevajî qebûl nake. Li ser Başûrê Kurdistanê jî amaje daye bûyerên girtinên keyfî ku tê texmîn kirin ew ji aliyê îstixbaratên PDK û YNK'ê ve hatine encam dayîn. Rêveberên Asayişên Giştî yên Herêma Kurdistanê jî rexneyên raporê di cî de nabînin û dibejin ku ew di wî warî de li gorî yasayên Herêma Kurdistanê tevdigerin û xwe weke parêzvanên mafên hemû kesên Kurdistanê dizanin. ▶ 12

## Lêgerîna Kûrdên Demokratîk ava bû û "xwe reqîbê BDP'ê" dibîne

Li Amedê bi navê Lêgerîna Kurdên Demokrat (LKD) tevgereke nû hat avakirin û ket nava meydana siyasî ya Bakûrê Kurdistanê. Serokên wê tevgerê dibêjin ku têkoşîna wan wê ji bo bidestxistina mafên netewî be. Damezrênerên LKD xwe ji partiyên din yên kurdan li Bakurê Kurdistanê cudatir dibînin û didin xuyakirin ku reqîbê wan BDP ye.

Li gor wan BDP daxwaziyên Kurdan yên siyasî formule nake. Derbarê AK Partî jî, yek ji rêvebirên LKD Tahsîn Sever dibêje ku AK Partî ne partiyeke Kurdan e, lê ya Tirkan e. Lêgerîna Kurdên Demokrat bi serkêşiya Sertac Bucak û biraziyê pêşengê Kurdan Xalid Begê Cibirî, Tahsîn Sever, ava bûye. Tahsîn Sever di hevdîtineke bi Rûdawê re eşkere kir ku ew dixwazin di dahatû de LKD bibe partiyeke siyasî. ▶ 3

## Sûriye Kurd xistin "lîsteyê"

Sûriyê lîsteyek li daîreyen nifûsê belav kir ku têde navê gelek Kurdên Ewrûpayê hene

Her heyamekê Desthilata Sûriyê biryareke nû derdixîne û zextên bêtir dixe ser Kurdên Rojavayê Kurdistanê. Vê carê jî Desthilata Sûriyê lîsteyek bi navên hejmarek Kurdên li diasporayê derxistiye û hewla sizadayîna wan dide. Li gor malpera KurdWatch, Dezgeha Ewlekariya Sûriyê lîsteyek bi navê hin çalakvanên Kurdên li derveyî welat ji dezgehên nifûsê li bajarên Kurdî re şandiye û ferman daye wan ku bêyî erêkirina wan ti belgeyên nasnameyê nedin kesên di lîsteyê de.

Kurdên Rojavayê Kurdistanê ku li Ewrûpa dijîn, derbarê vê helwesta Sûriyê ade dibêjin ku "bi vê biryarê dewleta Sûriyê dixwaze zextê li ser çalakvanên Kurd pêk bîne û wan bitirsîne." ▶ 6

**Ciwan û şiyan**
Xortekî Kurd yê şampiyonê Almanya bodygardan digihijîne ▶ 7

**Amediyên Almanya**
Li Bochumê Komela Amediyan "Diyar-Der" ava dibe ▶ 7

**Cemîla û Stefan**
Tevî cudahiyên olî û netewî, hezkirina wan bi ser ket ▶ 10

**Banga hevkariyê**
Komkar.eu banga hevkariyê li YEK-KOM'ê dike ▶ 6





Great Britain

HEJMARA NÛ LI FIROŞGEHAN

LE MONDE diplomatique Kurdî

www.lemondediplo-Kurdi.com
info@lemondediplo-Kurdi.com

www.arsivakurd.org

BerlingkseTidende ROJ TV tewanbar dike

# “ROJ TV zarokan dehfî nav PKK’ê dike!”

**Kopenhagen (Rûdaw) -** Piştî ku rojnameya Berlingkse Tidende ya Danîmarkî raporek derbarê peywendiyên navbera ROJ TV û PKK’ê weşand û tê de Rêveberê Berê yê ROJ TV Menuçêhr Zonûzî ragihandibû ku ROJ TV pere ji PKK’ê wergirtiye, hem ROJ TV û hem jî gelek sazî û şexsiyetên Kurd li Danîmarkayê nerazîbûn li hemberî rojnameya Berlingkse Tidende nîşan dan û ew rojname bi wêya tometbar kirin ku ne pîşeyî kar kiriye û guman tê ku kirin ji aliyê Tirkiyê hatibe haydan.

Menuçêhr Zonûzî ji bo Berlingkse Tidende de got wî bi serkirdeyên PKK’ê hevdîtin kiriye û fêm kiriye ku ew partî piştgiriya aborî ya ROJ TV dike. Herwiha rojnameyê hejmarek wêneyên Rêveberê Berê yê ROJ TV belav kirine ku di wan wêneyan de çend zarokên bi cilên Gerîlla tên nîşandan.

Berlingkse Tidende, ROJ TV bi ‘piştgiriya terorê’ û ‘haydana zarokan ji bo tevlîbûna PKK’ê’ tometbar dike. Berlingkse Tidende ku rojnameyeke rastgir a lîberal e, hefteya borî çend wêne weşandin û kampanyayek dijwar li dijî ROJ TV destpê kir. Berlingkse Tidende herwiha bername û hevpeyvînên ROJ TV ligel berpirsên PKK’ê, ku li herêmên ser sînor bi wan re hatine çêkirin, wek belge anîne.

Bi baweriya berpirsên ROJ TV û PKK’ê, kampanya rojnameya Danîmarkî di vê demê de destpê kiriye ku Tirkiyê hêzên xwe li ser sinor kom kirine û navçeyên di jêr kontrola Gerîllayên PKK’ê bombebaran dike, bi handan û piştgiriya Tirkiyê tê meşandin.

## “Rojnameyê ew pirs gelekî mezin kiriye”

Wezîrê Dadê yê Danîmarka, Lars Barford, got: “Rojnameyê ew pirs gelekî mezin kiriye. Lê heta niha ti belge ji bo tawankirina ROJ tv tune ye.” Dozgerê Giştî yê Danîmarkayê jî ragihand ku hevpeyvînên rojnamevanî yên wê televizyonê ligel Serokên PKK’ê ji çarçova yasayên karkirinê derneketine.

Xwediyê wan wêneyên weşandî, Metîn Yuce jî nerazîbûna xwe diyar kir ku wêne bêyî agahdarkirina wî hatine weşandin. Metîn ragihand, ew ê li dijî wê rojnameyê dozeke qanûnî veke û da xuyakirin ku roja 19’ê Gulan a 2010’an ji aliyê rojnama Berlingkse Tidende bi rêya telefonê gef li wî hatiye xwarin da ku di wê kampanyayê de beşdar bibe. Metîn eşkere kir ku di dema serdana xwe ya herêma Qendîlê de, wêneyê zarokên gundan bi kincên Gerîllayan kişandine, ew jî nayê wateya ku ew zarok Gerîlla bin.

Moleta weşana ROJ TV ji Danîmarkayê hatiye wergirtin û wêya jî kirîzeke siyasî di navbera Tirkiyê û Danîmarkayê de anîbû holê. Serokwezîrê Tirkiyê Receb Tayyip Erdogan di dema serdana xwe ya ji bo Danîmarka û piştî hevdîtina ligel serokwezîrê berê yê wî welatî Rasmussen, daxwaz kir ku nûçegihanê ROJ TV ji konferansa çapemeniyê bê derxistin, lê Rasmussen daxwaza wî cîbicî nekir. Dema ku Rasmussen ji bo serokatiya NATO’yê wekî berbijêr hat destnîşankirin, Tirkiyê pirsa girtina ROJ TV wek merc jê re danî, lê guşarên Tirkiyê bêyî encam man. Li Danîmarkayê demek zêde ye ku lêkolîn derbarê peywendiyên navbera ROV TV û PKK’ê destpê kirine.

Ji bo nerazîbûn nîşandana li hemberî tewanbarkirina ROJ TV, 7 Komeleyên Kurdî li Danîmarka jî daxuyaniyek belav kirin û tê de wiha ragihandin: “Demeke zêde bû em li benda encamên lêkolînan bûn, lê ji ber ku wê rojnameyê ew wêne wek belge weşandine, em bêhêvî kirin.” Daxuyaniya Komeleyên Kurdî tekez dike: “Heta rojnamevaneke/î kanala CNN yan BBC jî dikare wêneyên bi wî awayî bikşîne.”

Di hin wêneyên ku rojnama Berlingkse Tidende belav kirine, hejmareke ciwanên jêr 18 saliyê bi cilên Gerîllayan tên xuyakirin. Li gor rojnameya Berlingkse Tidende, Rêveberê ji kar durxistî yê ROJ TV, Menuçêhr Zonûzî, li cem Rêxistina UNICEF’ê gilînameyek li ser PKK’ê tomar kiriye û têde wan tometbar dike ku di şeran de zarokan bikar tînin. Li gor Menuçêhr Zonûzî UNICEF dixwaze di vê derbarê de lêkolînan bide destpêkirin.

Rêvebirê ROJ TV Şakir:

# Rojnamevanan lêborîna xwe ji me xwestin

**Köln (Rûdaw) –** Li ser tewanbarkirina ROJ TV bi “dehifdana zarokan bo nav PKK’ê” û ”piştgiriya terorê” ji aliyê rojnameya Danîmarkî Berlingkse Tidende, Rêvebirê ROJ TV Şakir daxuyanî dan Rûdawê û ev îdiayên wê rojnameyê wekî kampanyek reşkirina televizyona xwe bi nav kir.

**Rûdaw: Rojnameya Berlingkse Tidende ROJ TV bi dehifkirina zarokan bo nav refên PKK’ê û bi “piştgiriya terorê” tewanbar dike. Hûn çi dibêjin?**

Şakir: Wan ji xwe lêborîna xwe xwestin. Ji xwe ew nûçeya ku çêkirine eleqeya xwe bi ROJ TV re tune. Ji ber ku gelek reaksyon li hemberî wan hatin, lêborîna xwe xwestin. Ev yek jî derdixe ortê bê ev nûçe çiqasî nûçeyek ji rastiye dûr û li gor berjewendiyên hin derdoran amade kirine. Çi rojname, televizyon û ajansên navnetêwî hene, hema hema hemuyan hevpeyvîn bi rayedarên PKK’ê re çêkirine, bi wan re fotograf kişandine. Bêguman kesî ew bi vî awayî tewanbar nekirine, lê ew ji bo me sûcdariyek taybet e, bêguman. Em dizanin bingeha van êrişan ji ku tê. Yek dewleta Tirk e û ya din jî derdorên li Ewrûpa ku bi Dewleta Tirk re hevkariyê dikin. Bi van hewldana ew dibejin ‘em herîyekê bavêjin, bila tênê leka herî bimînê, bes e.’

**Rojnamevanan bi xwe an jî rojnameyê lêborîna xwe xwest?**

Niha çûyina zarokan ya çiyê û ROJ TV ti eleqeya xwe bi hev re nîne. Fotografên ku bi kar anîne, eleqeya wan bi ROJ TV ve tune. Ji ber ku zarok bi kar anîne û xwestin wan bikin sebebê êrişa li hember me, ev çend nûçeyek bê ehlaqî çêkirin. Ji ber wê yekê nerazîbûnên pir zêde li hember wan hatin, lêborîn xwestin, gotin me şaşitiyek kiriye, me zarok bi kar aniye.

**Rojnameyê an jî wan rojnamevanan lêborîna xwe xwestin?**

Rojnamevanên ku nûçe çêkirin. Niha li Kurdistanê teqrîben 1000 zarok di zindanan de ne. Bi dehan sal zindanîkirina wan tê xwestin, di bin îşkenceyê de ne. Ew rojnamevan û ew kesên din bi ti awayî vê rastiya zarokên Kurdistanê nayînin ziman. Bes fotografek girtine, kes nizane ew fotograf yên ku derê ne, zarokên Qendîlê ne? Em dizanin ku li Qendîlê bi dehan gund hene, bi sedan, bi hezaran zarok li wir dijîn.

**We behs kiribû ku hûne li dijî wan kesan dozê vekin. Eger wan lêborîna xwe xwestibin, ev mesele ji bo we diqede, anjî hûnê vê dozê bişopînin?**

Hinek derdor bi teşwîqa Dewleta Tirk, heta li gor me bi hin rûşwetên Dewleta Tirk, li hember televizyona me weke berdevkên Dewleta Tirk tevdigerin. Ev rewşeke pir cidî ye, li Ewrûpa qaşo dibêjin herkes azad e ku fikr û ramanên xwe bînin ziman, herkes dikare bi awayekî azad mafê xwe yê çapemeniyê bi kar bîne. Em jî bi navê bi milyonan Kurd li vir rojnamevaniyê dikin, em dixwazin bibin dengê bi milyonan Kurd. Ev bêtahmûliya ku tê nîşandan, bêtahmûliya Dewleta Tirk e û kesên ku bi vî awayî tevdigerin jî em dizanin li gor daxwazên Dewleta Tirk û bi Dewleta Tirk re hevpar van êrişan li dar dixin.

**Hûnê li hemberî wan kesan dozê bimeşînin?**

Li hemberî wan kesên ku ew îdiayên nerast anîne ziman em ê xwedî helwest bin. Û diziya şîrketê jî çêbû. Ji ber wê têkiliya wî kesî û şîrketê hatibû qutkirin. Dadgeha Danîmarka jî li ser dizîkirina wî biryar daye. Hem ew kesê ku ew îdia belav kirine û ew fotograf dane wan rojnamevanan û hem wan rojnamevan, bêguman em ê mafê xwe yê hiqûqî bi kar bînin.

**Ew kesê ku hûn behsa wî din, Rêvebirê berê yê ROJ TV Menuçêhr Zonûzî ye?**

Belê, rast e.

**Tê gotin ku Zonûzî nîv milyon Kronên Danîmarkî bi xwe re birine. Rast e gelo?**

Na, li ser hesabê şîrketê ji bo berjewendiyên xwe yên şeqsî bi kar aniye.

**Hejmarek tune?**

Ez bawer im 200 hezar Kronên Danîmarkî bûn. ROJ TV daxwaza van pereyan kir, wî jî nexwest bide û ew dane dadgehê û têkiliya wî û şîrketê ji hev qut bûn. Dadgehê jî paşvedana wan pereyan jê xest. Li ser vî esasî wî kesî dest bi van îdiayan kir.

**Ew pere li ROJ TV vegeriyan?**

Na, dadgehê biryar daye, wê bi awayekî jê bê standin.

**Dadgehê ROJ TV mafdar dîtiye?**

Rast e.




Rûdaw

Rojnameyeke siyasî û heftane

Xwedî
Rudaw Media GmbH

Serokê Civata Rêvebir
Nûredîn Weysî
nuradinwaisi@rudaw.net

Sernûser
Ako Mihemed
akopress74@yahoo.com

Rêvebirê Nivîsînê
Nasredîn Akyol
nasredin@rudaw.eu

Redaksiyon
Firat Kelehkî
kelehkî@yahoo.com

Azad Kurdî
azadKurdi@hotmail.com

Besam Mistefa
wardoz@gmail.com

Sîdar Bengîn Epozdemir
sidar@rudaw.nl

Dîzayner
Memo Celâl

Îdare û belavkirin
Mustefa Sefîq Edilbî
gare2005@hotmail.de

Şêwirmendê yasayî û aborî
Dipl. Kfm. Abdulletif Canimana
info@canimana.de

Navnîşan
Rudaw Media GmbH
Gutenbergstr. 63a
50823 Köln/Germany

Telefon: +49 (0) 221-26 00 40 02
Telefax: +49 (0) 221-26 00 49 81
www.rudaw.net
info@rudaw.eu

Rûdaw bo nivîsên ku bi nav tên weşandin ne berpirsyar e.
© Hemû maf parastî ne

www.arsivakurd.org

Biraziyê Xalid Begê Cibirî, Tahsîn Sever:

# LKD reqîbê BDP'ê ye

**Bawer Çem - Amed**

Lêgerîna Kurdên Demokrat (LKD) bi awayekî fermî ava bû. Yek ji rêveberên wê Tahsîn Sever, diyar kir ku ew dixwazin di pêşerojê de partiyeke lîberal ava bikin û ew BDP'ê jî weke reqîbê xwe dibînin.

Lêgerîna Kurdên Demokrat (LKD) ku bi serkêşiya Sertac Bucak û biraziyê pêşengê Kurdan ,Xalid Begê Cibirî, Tahsîn Sever, ava bû, wê di pêşerojê de bibe tevgereke siyasî. Rêvebirê LKD'ê derbarê armanca avakirina LKD'ê de ji Rûdaw re axivî. Sever diyar kir ku ji bo çareserkirina pirsgirêka Kurd divê pêşî Kurd weke milet bên qebûlkirin û wiha got: "Kurd milet in, heqê wan ê netewî heye. Ev mafekî kolektîf e, ne şexsî ye. Dewletê îro Kurd qebûl kirine lê heqê wan ê kolektîf qebûl nake. Bi heqê şexsî problema Kurdistanê çareser nabe. Têkoşîna me ji bo bidestxistina heqê netewî ne." Tahsîn Sever destnîşan kir ku di pêşerojê de ew dixwazin LKD weke partiyeke siyasî ya lîberal ava bikin: "Di roјeva me de avakirina tevgereke siyasî heye. Em destpêkê dixwazin bibin tevgerek. Ev tevger daxwaz bibîne, wê ji xwe re partiyekî ava bike. Yek ji prensîbê Lêgerîna Kurdên Demokrat ev e; divê demokrat be, lîberal be, netewî be."



**Grupa Lêgerîna Kurdên Demokrat (LKD)**



**Tahsîn Sever**

### "Rêxistinên demokratîk nebûn"

Tahsîn Sever destnîşan kir ku wê LKD li gorî şert û mercên Rojhilata Navîn û konjoktura cîhanê xwe tim veguherîne û got: "Ev tevger li gorî şertên dinyayê xwe ji nû ve wê ava bike. Ya ku pêşiya me veke demokrasî ye. Em ê demokrasiyê di nava rêxistina xwe de, civaka xwe de bi kar bînin." Sever li ser cudahiyên di navbera LKD û BDP'ê de jî sekinî: "Li gorî me BDP daxwazên Kurdan ên siyasî formule nake. BDP li çareserkirina meseleya Kurdan weke heqê şexsî mêze dike. Li gorî BDP'ê ger li Tirkiyeyê heqê çareserkirina şexsî bi pêş de biçe, wê Kurd jî bigihijin heqê xwe. Lê li gorî me ev xelet e. Di nava wan de guftûgoyek mafê kolektîf tune ye. Demokratîbûna Dewleta Tirkan bi çareserkirina pirsgirêka Kurd mimkûn e. Eger Kurdan bipejirînin, wek miletekî bibînin û mafê wan nas bikin, encax dikarin bibin demokrat."

### "AK Partî ne Kurdistanî ye"

Sever da zanîn ku daxwazên PKK'ê û rêbaza wan a têkoşînê ne li gorî hev in derbarê pirsa me ya "Hûn li Kurdistanê ji xwe re kîjan partî reqîb dibînin?" wiha bersiv da: "AK Partî partiyeke Kurdan nîn e, partiyeke Tirkan e. AK Partî ji bo siyaseta Kurdan reqîbek nîne. Ji ber ku ew Kurdistanî nîne. Helbet li vir esas reqîbê me BDP ye, PKK ye. Eger me bawer bikira siyaseteke Kurdistanî li vir heye, wê çaxê hebûna me îcab nedikir. Em dixwazin daxwaziyên Kurdan bi awayeke zelal bînin rojevê û Kurdan li gorî van daxwazan rêxistin bikin."

Sever bi bîr xist ku PKK êdî daxwaziyên xwe yên berê rêz nake û wiha dawî li axaftina xwe anî: "Di daxwaziyên PKK'ê yên îro de ne Kurdistaneke azad heye, ne Kurdistaneke federal heye û ne jî otonomî heye. Îro heqê me tune ye em bêjin Kurd ne netewe ne, heqê wan ê kolektîf tune ye. Beriya her tiştî heqê Kurdan heye xwe îdare bikin. Kesek nikare bêje ne heqê Kurdan e ku dewleteke azad ava bike. Kurd li ku tatmîn bibin wê li wir çareserî çêbibe. Ku federasyonê bixwazin federasyon wê çêbibe. Ku ji federasyonê wêdetir tatmîn bibin, wê çaxê wê daxwaza xwe bilêv bikin. Hêza Kurdan digihijê nagihijê ew tiştekî din e. Lê prensîb ev e."

---

Mûsewî û Kerûbî daxwaza lidarxistina xwepêşandanan ji xelkê Îranê dikin

# Helwêsta gelê Rojhilatê Kurdistanê hê ne diyar e

**Azad Kurdî**



**Ebubekr Muderisî**



**Hasil Dase**



**Xalid Tewekulî**



**Mihemetnezif Qadirî**

Ligel nêzîkbûna salvegera hilbijartinên Serkomariya Îslamî ya Îranê, rêberên Tevgera Kesk daxwaz ji alîgirên xwe dikin ku dakevin ser cadeyan. Çavdêrên siyasî bawer in ku di wê rojê de bajarên Rojhilatê Kurdistanê wê bêdengiyê hilbijêrin.

Piştî ragihandina encamên hilbijartinên gera dehemîn yên Serkomariyê di sala 2009'an de, xwepêşandan û nerazîbûnên xelkê Îranê ew welat ber bi kirîzeke mezin a siyasî biribûn. Dema ku herdu berbijarên din ên Serokatiyê, Mîr Husên Mûsewî û Mehdî Kerûbî, di wê hilbijartinê de serkeftin bidest ne anîn, wan ragihandin ku di hilbijartinan de sextekarî hatiye kirin û encaman napejirînin.

Sala borî xelkê Rojhilatê Kurdistanê û neteweyên din ên Îranê di wan xwepêşandanan de ne beşdar bûn. Li gor çavdêrê siyasî û parlamenterê berê yê Kurd li Parlamena Îranê, Hasil Dase, Kurd bi rêz û hurmetan temaşeyî hemû tevgereke azadîxwazane li Îranê dikin û da xuyakirin "Lê helwesta rêberên Tevgera Kesk beramberî Kurdan ne zelal e û xwestek û daxwaziyên Kurdan di helwestên wan de nayê dîtin, loma Kurd di wan xwepêşandanan de beşdariyê nakin." Partiyên Rojhilatê Kurdistanê jî beşdarîkirina Kurdan di wan xwepêşandanan baş nizanin, ji ber ku di bingeh de piraniya wan bawerî bi hilbijartinên Îranê tune ye.

Bi baweriya Endamê Polîtburoya PDKÎ, Mihemed Nezîf Qadirî, helwesta wan boykotkirina hilbijartinan bû û da zanîn ku di destpêkê de ketina xelkê nerazî ji bo ser cadeyan tenê ji bo guhertina desthilatê ji Ehmedînejad bo Mûsewî bû: "Lê armanca xelkê ne ew bû ku Mûsewî cihê Ehmedînejad bigre, lewra xwepêşandan radîkaltir bûn."

Derbarê bersiva Kurdan ji bo daxwaza rêberên Tevgera Kesk ku ji xelkê Îranê xwestine di roja 12'ê Hezîranê de dakevin ser cadeyan, Qadirî nerînên xwe wiha anî ziman: "Xelkê Rojhilatê Kurdistanê di hemû tevgerekê de beşdariyê dike ku piştgiriyê ji daxwaziyên wan bike. Di xwepêşandan û nerazîbûnên sivîl ên sala borî yên piştî hilbijartinan de jî, gelek ji goriyan Kurd bûn, loma dijwar e Kurd baweriyê bi wan kesan bikin ku bangewazê bo meş û xwepêşandanan dikin." Hasil Dase jî tekez dike: "Îsal xelkê Kurdistanê di xwepêşandanan de beşdariyê nakin. Dibe Kurd bi awayekî ne rasterast piştgiriya wê tevgerê bike."

Partiyên siyasî yên Rojhilatê Kurdistanê derbarê beşdarîkirina rasterast di Tevgera Kesk de ne hevfikr in. Heta çend partiyên Kurdî ji bo cara yekemîn piştî 30 sal desthilatdariya Komara Îslamî ya Îranê, di hilbijartinên Serkomariyê de beşdarî kirin û beşek ji partiyan jî hilbijartin boykot kirin.

Endamê Polîtburoya Komeleya Şoreşger a Zehmetkêşên Kurdistana Îranê, Ebubekr Muderisî, derbarê beşdarîkirina Kurdan di xwepêşandanên Tevgera Kesek de da xuyakirin: "Piştî mangirtina 13'ê Gulan a 2010'an Kurdistanê bi kiryar pêşan da ku ne bêdeng dibe û amade ye dengê xwe yê nerazîbûnê bilind bike. Lê herçiqas Kurdistan piştgiriya dirûşmên giştî yên tevgera demokrasîxwaziya Îranê wek jiholêrakirina dîktatoriyê, azadiya girtiyên siyasî û hilbijartina azad dike, lê gelê Kurd daxwaz û pirsgirêkên taybet bi xwe hene." Derbarê nerîna partiya wan ji bo beşdarîkirina di wan xwepêşandanan de, Muderisî got: "Komele bêguman alîgirê wêya bûye ku xelkê Kurdistanê divê wê tevgerê wek derfetekê bikar bîne û xwe wek beşdarê vê tevgerê bizane."

www.arsivakurd.org


Umît Firat

Nivîskar û analîst Umît Firat:

# Kesê ku vekirî bêje ez Kurd im û Elewî me, wî nakin serokê CHP'ê

Li gor Firat, eger ku CHP'ê bixwaze di çareserkirina pirsgirêka Kurd de roleke erênî bilîze, pêwîste destpêkê CHP gunehên xwe qebûl bike

**Piştî îstîfakirina serokê Partiya Komara Gel (CHP) Deniz Baykal, Kemal Kiliçdaroğlu yê Kurd û Elewî wek serokê CHP hat hilbijartin. Tu vê pêvajoyê çawa dinirxinî?**

Deniz Baykal 15-16 sal serokatiya CHP kir, wî Tirkiye nexist nav şerekî, lê polîtîkayek wisa meşand ku êdî bêyî wî berdewamkirina CHP'ê ne mumkin bû. Kesên ku li derdora Baykal bûn, kesî nikaribû serokatiya CHP'ê bikin, lewra hemi wek Baykal gunehkar bûn.

Kemal Kiliçdaroğlu hem ji polîtîkayê pir fam nedikir, hem jî ji ber ku di partiyê de nû bû, pir nebûbû şirîkê gunehên Baykal. Ji ber wê Kiliçdaroğlu hat hilbijartin. Ji hevalên Baykal ji xeynî çend kesan, piraniyên din di rêvebiriya partiyê de cîhê xwe parastin. Dewleta kûr û CHP ew krîz wisa çareser kirin. Lê dîsa jî ne mimkune ku di CHP'ê de guherînek demokratîk pêk bê. Lewra gava em li dîrokê binêrin, em dibînin ku demokratîzebûna partiyên totalîter ne mimkun e.

Kemal Kiliçdaroğlu bi xwe nabejê ez Kurd im û Elewî me. Em dibêjin ew Kurd û Elewî ye. Kesê ku vekirî bêje ez Kurd im û Elewî me, wî nakin serokê CHP'ê.

Dibe ku ji ber nasnameya Kiliçdaroğlu hin rayên Elewiyên ku çûbûn Partiya Nîjadperestên Tirk MHP, vegerin CHP'ê. Lê di serî de Îzmîr, li pir cîhan "Tirkên Spî" yên statukoperest û nîjadperest ku heta niha rayên xwe didan CHP'ê, ew ê ji ber nasnameya Kilioçdaroğlu piştgiriya MHP'ê bikin.

Wisa xuyaye ku wê Kiliçdaroğlu jî nasnameya xwe ya Kurdîtiyê û Elewîtiye bide aliyekî û wek yên berê xwe li gor teza fermî ku "Kurd li Tirkiyê dikarin her tişt bin, lê nikarin Kurd bin" vatiniyên xwe bi cîh bîne. Eger ew bi rastî Kurd û Elewî ye, wê gavê divê xeta CHP ji bingeh ve bê guherîn ku ez bawer nakim tiştekî wisa çêbibe. Ez dixwazim li vir gotina İsmet Paşa ya "Di vî welatî de tenê miletê Tirk dikare mafên netewî û etnîkî daxwaz bike. Mafê ti kesê din yê wisa nîne" bînîm bîra we. Ew gotin baş dide xuyakirin ku di CHP'ê de mirov dikare bibe çi.

**Gelo wê CHP bikaribe ji bo çareserkirina pirsgirêka Kurd rolek erênî bilîze?**

Gava CHP bixwaze ji bo çareserkirina pirsgirêka Kurd bernameyekê pêşkêş bike, divê berê dîroka xwe rexne bike û ji dîroka xwe sûd werbigre. Berpirsiyarê pirsgirêkên sereke yên îro CHP ye. Lewra ji salên 1920'an û vir ve CHP li ser çarenûsiya Tirkiyê xwediyê rolek sereke ye. Heta CHP gunehên xwe qebûl neke û xwe rexne neke, nikare ji bo pirsgirêka Kurd rolek erênî bilîze. Hîn jî tehmûla CHP'ê ji rexneyên dema Mustafa Kemal û Înonu re nîne. Lewra ez ji CHP'ê tiştekî hêvî nakim, lê dibe ku CHP wek berê ewqas tund li dijî pêşniyarên çareserkirina pirsgirêka Kurd dernekeve.

**Gelo di rojên dahatî de dikare di navbera CHP û BDP de hevkariyek pêk bê?**

Di serî de Abdullah Ocalan û hemû partiyên wek HEP, DEP, HADEP, DEHAP û DTP ku Partiya Demokrasî û Aşitî (BDP) xwedî li mîrata wan derdikeve, her tim dixwestin bi CHP'ê re hevbeşî yan jî hevkariyek wisa pêk bînin. Wek ku tê zanîn, di hilbijartinên giştî yên 1991'ê de SHP û HEP hevkariyek pêk anîn û bi vê hevkariyê bi qasî 20 parlamenterên Kurd ketin Parlementoya Tirkiyê. Lê piştre SHP ji ber vê hevkariyê poşman bû. Bi salane di nav CHP'ê de li ser vê hevkariyê gengeşî tên kirin. Ji ber wê gelek zore ku CHP dîsa xwe bide bin barekî wisa.

Ji bo hilbijêrên BDP yên Kurd hevkariyek wisa pirsgirêk nabe, lê ew ji bo hilbijêrên CHP yên Tirk, keçên navik tazî ku li Îzmîrê kevir avêtin qefilêya DTP'ê û Ahmet Turk, pirsgirêk e. Ez bawer nakim ku girseyên ku bi salane bi propagandaya dewlet û medyayê bûne dijminên Kurdan, hevkariyek wisa qebûl bikin.

**CHP heta niha xetek nîjadperest û şovenîst parast û di vê çarçoveyê de dijmintiya dewleta Kurd ya Federal dikir. Li gor dîtina we, di dema nû de ev polîtîka dikare bê guhertin?**

Heta niha CHP her tim li hemberî polîtîkaya Partiya Dad û Geşedanê (AK Partî) derket. Ango AK Partî çi got, CHP li dijî wê got. Ew ne polîtîka bû, bê polîtîkatî bû. Kemal Kılıçdaroğlu ne wek Deniz Baykal otorîter û xwediyê xûyek tûj e. Ew ne bi qasî Baykal karîzmatîk e û bi devleta kûr re têkiliyên wî nînin. Herî girîng ji, ew bi xwe xwediyê nasnameyek cuda ye, ango Kurd û Elewî ye. Ew bi xwe di derheqê Kurdîstana Başûr de ne xwediyê dîtinên erênî be ji, ji ber rewşa heyî, ango rewşa de facto, dikare li hemberî Kurdîstana Başûr polîtîkayek nermtir bi rê ve bibe. ▶ 14

**Hevepeyvîn: Seyîdxan Kurij**

Profesorê Holandî Martin van Bruinessen:

# Madeya 140 metirsîdar e

**Otrekht (Rûdaw) -** Profesorekî Holandî madeya 140 ya destîra Îraqê ji bo dahatûya Kerkûkê metirsîdar binav dike û wiha dibêje: "Serkirdeyên Kurd ji gelê xwe rastbîntir in."

Profesor Martin van Bruinessen ku di nav Kurdan de zêde ji ber pirtûka wî ya bi navê 'Axa û şêx û dewlet' tê naskirin, di semînerekê de ku hefteya borî ji aliyê Yekîtiya Xwendekarên Kurd li Holanda li bajarê Otrikht yê Holanda jê re hatibû lidarxistin, behsa pirsgirêkên Kerkûkê û Turkmanên wî bajarî kir. Van Bruinessen wiha axivî: "Dema em temaşeyî serjimêriyîn cuda yên bajarê Kerkûkê dikin, xuya dibe ji bo demeke kêm rêjeya wan pir kêm dibe. Vêya jî ne tiştek asayî e." Lê bi gotina wî profesorê Holandî "Sedema wê guhertina ji nişka ve ya hejmara Turkmenên Kerkûkê bi wêya ve girêdayî ye ku di dema xwede gelekan ji wan ji ber berjewendiya xwe nasnama xwe ya Turkmanî eşkere nekiribûn."


Profesorê Martin van Bruinessen

Van Bruinessen di wê semînarê de madeya 140 wek madeyek metirsîdar hesiband û nerînên xwe wiha anîn ziman: "Madeya 140 grûbên netewî yên cuda yên Kerkûkê li dijî hev tûjtir dike. Pir giring e ku hem Hikûmeta Navendî û hem Hikûmeta Herêma Kurdistanê jî dev ji xelkê Kerkûkê berdin û rê bidin xelkê Kerkûkê bi xwe ku pirsgirêkan çareser bikin." Di dirêjiya axaftina xwe de Van Bruinessen da xuyakirin: "Pirsgirêk ew e ku kes ji Êzdiyekî pirs nake 'Tu dixwazî Kurd bî yan Ereb?' Lê li Kerkûkê pirsê dikin: Dixwazî ser bi Kurdistanê bî yan Navendê?"

Li gor Van Bruinessen "Herçiqas hêviyek eşkere ya Kurdan heye ji bo ku Kerkûk bikeve ser Kurdistanê û wêya jî di referandûmeke ne fermî de hat selimandin, lê di wê pirsê de serokên Kurdan ji gelê Kurd têgihîştir in û dizanin hin çareserî çênabin."


## Abonetiya Rûdaw

Abonetî

Ez dixwazim bo dema

☐ Şeş mehan ☐ Salekê ☐ Vekirî

bibim aboneyê/ya rojnameya Rûdaw.

Rojnameya min heftane bişînin vê navnîşanê

Nav : ____
Paşnav : ____
Navnîşan : ____

Telefon a min : ____
E-Mail a min : ____

Buhayê abonetiyê ji vê kontoyê bikşînin;

Hejmara kontoyê : ____
Şîfreya bankê (BLZ) : ____
Bank : ____
Xwediyê kontoyê : ____

Dem û cîh: ____ Destnîşan: ____

Anjî ezê bihayê abonetiyê bişînim ser kontoya Rûdawê ya li jêr û dekontoya wê ji navnîşana Rûdaw re bişînim.

**Bihayê abonetiyê ji bo salekê bo nav Almanya: 60Euro**
**Bihayê abonetiyê ji bo şeş mehan bo nav Almanya: 30Euro**

**Hesabê Rûdaw**
Rudaw Media GmbH
**Bank** Deutsche Bank Köln
**Konto Nr** 2450161
**BLZ** 37070024

**Navnîşan**
Rudaw Media GmbH
Gutenbergstr. 63a
50823 Köln / Almanya
info@rudaw.eu


www.arsivakurd.org

Endamê Kongresa Amerîka Dana Rohrabacher:

# Kurdistan ji bo bazirganiya Amerîka girîng e

**Washington (Rûdaw) -** Dana Rohrabacher nûnerê navçeya 46'ê ya wîlayeta Californiya li Kongrêsa Amerîka ye û di karûbarên derveyî û nivîsandin û piştîvanîkirina biryara 873'ê ya Kongrêsê ya taybet bi vekirina konsolxaneya Amerîka li Hewlêrê, kesayetiyeke çalak bû. Rohrabacher di vê hevpeyvîna ligel Rûdawê de dibêje ku vekirina konsolxaneya Amerîka li Hewlêrê derfetên hilberînê yên zêde ji bo bazirganên Amerîka peyde dike, lê ew di wê baweriyê de ye ku Amerîka ti garantiyeke taybetî nade Kurdan piştî kişandina hêzên xwe ji Îraqê. Hinek siyasetvanên alîgirên Ereban li Amerîka piştî biryara Kongresê dest bi kampanyeke li dijî vekirina konsolxaneya Amerîka li Hewlêrê kiribûn, ji ber ku li gor wan ew biryar wê bibe sedemê parçebûna Îraqê.



Dana Rohrabacher

**Rûdaw: Hefteya borî kongresa Amerîka biryara hejmara 873 pejirand, ku daxwaz dike Amerîka konsolgeriya xwe li Herêma Kurdistanê veke. We piştîvaniyeke berçav li vê biryarê kir. Çima girîng e Amerîka konsolxaneya xwe li Hewlêrê veke?**

Dana Rohrabacher: Kurdistan navçeya herî aram a Îraqê ye û ev yek derfteke mezin dide berjewendiya bazirganî ya Amerîka. Loma divê em peywendiyeke diplomatîk li Herêma Kurdistanê ava bikin ji bo piştgirîkirina vê armancê.

## Ger navçên din ên Îraqê bibin dojeh, wê Îraq parçe bibe

**Bi baweriya hinek pisporan ev pêngaveke ji bo parçekirina Îraqê ye.**

Îraq wê parçe parçe bibe, dema navçên wê yên din bi tevahî têk herin û bibin dojeh. Lê ger Îraq aram bû, wê aramiyê ji bo navçên din jî dabîn bike.

**Piştî kişandina hêzên Amerîka ji Îraqê, hûn çaverê dikin ku Hikûmeta Amerîka garantiyeke taybet bide Kurdan?**

Na, lê hevtêgihiştineke taybet di navbera herdû aliyan de wê pêk bê, wek rêzgirtina li otonomiya herêmayetî ya Kurdan.

**We ji ber çi piştîvaniya vê biryarê kir?**

Erkê me ye wek çalakvanan ku em hewl bidin da ku hikûmeta me karên erênî cîbicîh bike.

**Gelo nûnerên Kurd li Washington ti rol lîstin di bihêzkirina peywendiyên di navbera Amerîka û Herêma Kurdistanê de?**

Erê.

**Peywendiyên we ligel serkirdayetiya Kurd çawa ne?**

Peywendiyên min ligel serkirdayetiya Kurd pir erênî ne.

**Hevpeyvîn:**
**Hawar Ebdulrezaq**

# Ewrûpa pişta xwe bi gaza xwezayî ya Kurdistanê germ dike

Şirketa Dana Gaz a Îmaratî hewl dide heta dawiya îsal berhema rojane li Kurdistanê bigihîne 200 milyon $m^3$

**Rêbend Sadulla /**
**Hawar Ebdulrezaq**



Karmendekî şirketa petrolê boriyên gazê vedike

**Hewlêr (Rûdaw) -** Rêveberê cîbicîkar li Şîrketa Dana Gaz a Îmaratî ragihand ku şîrketa wan rojane nêzîka 150 milyon $m^3$ gaz li Herêma Kurdistanê berhem tîne û kar dike heta dawiya îsal berhema wan a rojane bigihe 200 milyon $m^3$.

Sermayeya şîrketa Dana Gaz a Îmaratî, 78 milyar Dolarên Amerîkî ne, sala 2007'an Kurdistan dest bi dirustkirina projeya bajarê gazê kir, tenê behsa dabînkirina pêdiviyên Îraq û Kurdistanê yên gazê dikin, lê wek projeyeke stratejîk tê pêşbînîkirin armanca wê ya serekî deranîn û firotina gazê be ji aliyê Herêma Kurdistanê ve.

Roja 15'î Nîsan a 2007'an Şîrketa Dana Gaz a Îmaratî, bo pêşvebirin û deranîna gazê li gel Hikûmeta Herêma Kurdistanê girêbestek îmze kir. Herwiha, girêbesteke din li gel hikûmeta herêmê îmze kir bo damezrandina refînereke gazê li kombîrên Kormor û rakişandina 180 km ji boriyên gazê û amadekirina pêwîstiyên din bo dabînkirina gaza du santralên elektrîkê li Hewlêr û Çemçemal.

Li gor texmînên destpêkî, îmkana tevahî yên kombîrên Kormor û Çemçemal nêzîka 4 trîlyon $m^3$ ên gazê dibe, herwiha yedeka gaza wê zêdetir e. Rêveberê cîbicîkar li Şîrketa Dana Gaz a Îmaratê, Ehmed Raşid Erbîd, got: "Rojane em nêzîka 150 milyon $m^3$ ji gazê berhem tînin, em hewl didin jî heta dawiya îsal berhema me ya rojane bigihe 200 milyon $m^3$."

Malpera fermî ya Şîrketa Dana Gaz a Îmaratî eşkere kir ku ji sedî 50 ji projeya gaza Kurdistanê pişka şîrketê ye. Proje bi nêzîka 3 milyar dolaran tê cîbicîkirin û tê çaverêkirin qebareya dawî ya hilberîn û berhemên projê bigihe 40 milyar dolarên Amerîkî.

Berê Serokê Cîbicîkar ê Encûmenê Kargêrî ya Şîrketa Dana Gaz a Îmaratî, Hemîd Cefer, gotibû: "Projeya bajarê Kurdistanî yê gazê, bi awayekî ne yekser derfeta kar bo 200 hezar hevwelatiyên Îraqê dabîn dike." Ehmed Raşid jî dibêje: "Armanca me ew e bi hemû îmkana xwe zêdetirîn mîkdara gazê derbînin da ku piştî dabînkirina pêdiviyên Herêma Kurdistanê, pêdiviyên tevahiya Îraqê jî dabîn bikin û piştre berê xwe bidin firotina gazê bo derve jî."

Medyayên cîhanî yên taybet bi warê aborî û pîşesaziyê pêşbîniya wêya dikin ku berhema gaza Kurdistanê bi rêya projeya mezin a dabînkirina gaza Ewrûpa (Nabuko) bo derve bê şandin.

Sala borî herdu şîrketên OMF a Otrîşê û MOL a Hungarî di daxuyaniyeke hevbeş de ragihandin ku bi buhayê 8 milyar dolarên Amerîkî û bi hevkarî li gel herdu fîrmayên petrolê yên Hîlal û Dana Gaza Îmaratî pişkdarî di projeya Nabuko de kirine. Herwiha dan zanîn ku piştî pêdiviyên rojane yên Îraqê ku ji 500 $m^3$ pêk tên dabîn bikin, dest dikin bi şandina gazê bo tora boriyên Nabuko.

Ehmed Raşid ragihand: "Niha berhemên me tenê bo hundirê Îraqê ne, lê ger derfetek peyde bû, çima na?" Cerwan jî eşkere kir ku yedekekî mezinî gazê li nav xaka Herêma Kurdistanê de heye û pêdagirî li ser wêya kir ku di demeke kurt de: "Emê bikarin beşek ji gazê bişînin derve."

Rêveberê giştî yê şîrketa Dana Gaz got: "Herêma Kurdistanê ji aliyê aborî û bazirganî xwedî yedekeke mezinî gazê ye û dikare di paşerojê de gaz û petrolê bifiroşe derve û cihekî aborî yê balkêş ji xwe re dirust bike."

Kompanya Hîlal soz ku di sala 2014'an de, rojane daye 3 milyar $m^3$ gaz dabîn bike. Li gor vêya, projeya gaza Herêma Kurdistanê di hundirê 5 salên bê de, dikare herêmê bike yek ji welatên hilberîna gazê li Rojhilata Navîn.

Bê guman, cîbicîkirina projeya Nabuko zerereke pir mezin û stratejîk li aboriya Rûsyayê dide û wiha lê dike ku êdî Ewrûpa pişta xwe bi gaza Rûsya wek tena çavkaniya gazê girênede.

www.arsivakurd.org

Kovan Amedî:

# Komkar.eu ji bo hevkariya bi YEK-KOM’ê re amade ye

**Zeki Ozmen** Marburg

Di vê dema dawiyê de bi taybetî li ser rêbazên nêzîkirina saziyên Kurdan yên li Ewrûpa, gelek gotûbêj tên kirin. Ji ber YEK-KOM û Komkar.eu du saziyêm herî mezin ên Kurdan yên li Almanyayê ne, bi taybetî di nîqaşên bi vî rengî de navên van her du saziyan derbas dibe. Li ser vê yekê me serî li dîtinên Serokê Komkar.eu, Kovan Amedî, da.

Amedî bi taybetî li ser ne bi hevre karkirina saziya wî û YEK-KOM’ê re got sedem tuneye ku Kurd bi hev re kar nekin, wî got: “Ne mumkine ku Kurd di hemû waran de hemfikir bin, lê divê Kurd reng û dengên cuda qebûl bikin. Ji xwe eger em di hemû waran de wek hev bifikirin, wê demê hewcedarî bi rêxistinên cuda nîn e, hîngê emê xwe di yek rêxistinî de rêz bikin. Hebûna rêxistinên cuda, egera hebûna fikrên cudaye.”



Serokê Komkar.eu Kovan Amedî

### Em li ser namzetên Kurd siyasetek muşterek bajon

Serokê Komkar.eu dibêje ku ger ew wekî Kurd bixwazin bi hevre kar bikin, gelek aliyên wan ên hevbeş hene û vê nimûneya konkret dide: ”Em dikarin aliyên xwe yên hevbeş bidin pêş û li ser wan bi hevre kar bikin. Wek tê zanîn, îsal di destpêka havînê de li gelek welatên Ewrûpayê hilbijartinên Parlamentoyê pêk tên, em dikarin li ser namzetên Kurd, siyasetek hevbeş bajon, ango piştgiriya wî bikin ku bo Kurdan baştire.”

Kovan Amedî li ser pirsa çareserkirina pirsgirêkn di navbera Komkar.eu û YEK-KOM’ê jî wisa daxive: ”Divê fikrên cuda nebin egera pirsgirêkan, em dikarin nêzîkbûneke hîn baştir peyda bikin. Pir caran Kurd li ser gelek tiştan li hember hev du hukmekî pêşîn dajon. Eger zemîna bi hevre karkirinê çê bibe, hîngê ew hukmên pêşîn jî pûç dibin. Em wek Komkar.eu hewl didin ku bi YEK-KOM û rêxistinên din re zemîna bi hevre karkirinê çê bikin. Hebûna diyalogê ji bêyî diyalogiyê baştir e.”

### Li ber hevkariyê, gelek asteng û rêgirî hene

Amedî dibeje ku ew hestên vê dawiyê yên di navbera Komkar.eu û YEK-KOM’ê de baş dibîne, têrê nake, divê hîn baştir be. Divê kesayetî û rewşenbîrên Kurd jî rolek erênî bilîzin, xizmeta yekîtiya Kurdan bikin. Alîkarên wan bin û piştgiriya yekîtî û hevkariya kurdan bin.

Ew tîne zimên ku berî her tiştî, gava du rêxistin bên ba hev û bi hevre kar bikin, kar û xebata Kurdan geş dibe û xebat hîn xurtir dibe: “Gelek Kurd hene ku li derveyê rêxistina ne, bi hevre karkirin hêvî û baweriy wan jî xurt dike û ew jî dikarin tevlî xebatê bibin. Hîngê em dikarin li Ewrûpayê, îmze bavêjin bin gelek xebatên hêja.”

Derbarê tesîra çêbûna hevkariyeke muhtemel a van her du saziyan, Amedî got: ”Li gor min, dikare gelek tesîrên baş bike. Xebatên hevbeş ên rêxistinên Kurdan li derve dikare li ser xebata li nav welat jî bandorekî baş deyne. Di zanim gelek asteng û rêgir hene, lê divê em bi înat bin. Em wek Konferderasyona Komeleyên Kurdistanê li Ewrûpa-Komkar.eu samîmî ne û emê berdewam bin.”

### Bila YEK-KOM jî hewla hevkariyê bide

Kovan Amedî di dawiyê de bendewariyên xwe yên li ser hevkariya bi YEK-KOM’ê re wisa bi lêv dike: ”Hewldanên me her tim hevkarî, tevxebatî û yekîtiya Kurdan e. Helbet YEK-KOM jî yek ji rêxistinên Kurdan e li Ewrûpayê ku em wekî Komkar.eu dixwazin bi wan re kar bikin. Em di hemû kar û xebatên xwe de berjewendiya giştî ya gelê Kurd esas digrin. Bêguman bi hevre karkirin tenê bi daxwaza Komkar.eu yê nabe, pêwîst e YEK-KOM jî hewl bide û bixwaze. Niha peywendiyên me hene û em dixwazin bi pêş bixin û di xizmeta civata Kurd de.”

## Wezîra Bazirganiya Swêdê seredana Zekeriya kir

**Hewlêr (Rûdaw) –** Îro şandeke bazirganî ya Swêdê bi serokayetiya Wezîra Bazirganiya Swêdê Eva Byorling seredana Herêma Kurdistanê kir û hevdîtinek ligel hunermend Zekeriya Ebdulla kir û navbirî jî projeyên xwe pêşanî şandê dan.

Derbarê hatina vê şanda bazirganî de, Hunermend Zekeriya Ebdulla ragihand: “Seredana Wezîra Bazirganiya Swêdê bê guman di çarçoveya bihêzkirina peywendiyên Herêma Kurdistanê û Swêdê de ye û Wezîra Bazirganiya Swêdê jî kêfxweşiya xwe derbarê wêya ku wek Kurdekî ji Swêdê vegeriyame û bi van projeyan rabûme, anî ziman.” Herwiha, navbirî daxuyand ku şandê bi awayekî erênî projeyên wî nirxand û got: “Projeyên min bi dilê wan bûn.”

Şanda bazirganî ya Swêdî, ji bilî wezîra bazirganiyê, jimareke zêde ya bazirgan û nûnerên şîrketên Swêdê li xwe girtibû. Derbarê wêya ka gelo vê şandê soz da ku şîrketên xwe bişînin Herêma Kurdistanê û hilberînê bikin, Zekeriya got: “Belê, min jî ji aliyê xwe ve ew dehif dan ji bo bihêzkirina peywendiyên bazirganî ligel Herêma Kurdistanê û wan soz dan me.” Hunermendê Kurd Zekeriya Ebdulla eşkere kir ku ew dixwaze di nav projeyên xwe yên pêşerojê de kolêjeke hunerî li Kurdistanê damezrîne.

# Rêjîma Sûriyê dixwaze çalakvanên Kurd ên li derve bêdeng bike

**Sîrwan H. Berko** Berlîn

Dema Cengîzxan Hiso di orta salên heştêyî de ji Sûriyê derket û çû Almanya, wî nizanîbû ku ew ê demeke dirêj nema karibe vegere gundê xwe. Ev bêtirî bîst salan e ku wî gundê xwe li navçeya Tirbesipiyê li Rojavayê Kurdistan nedîtiye. Wek ku diyar e, ew ê ta demeke nediyar nikaribe derbasî Sûriyê bibe. Ji ber ku navê Cengîzxan Hiso di lîsteya wan kesan de ye, ku ger ew vegerin Sûriyê, ew ê yekser bên girtin. Ji ber ku Hiso li Berlînê dijî û rêjîma Sûriyê nikare xwe bigihîne wî, rejîm niha bi awayekî din hewil dide ku wî ceza bike.

Wek ku malpera KurdWatch .org ragihand, di destpêka Gulan a 2010’é de Dezgeha Ewlekariya Dewletê lîsteyên navan şandine ji dezgehên nifûsê li bajarên Kurdî re û ferman daye wan ku bêyî erêkirina wê nabe ew ti belgeyên nasnameyê bidin kesên di lîsteyê de. Piraniya kesên ku navên wan di lîsteyan de hatine rêzkirin,



Kamiran Haco



Cengîzxan Hiso

Kurdên li tarawgehê ne. Hin ji wan di warê xebata siyasî û mafê mirovan de naskirî ne, hinên din jî kêm an nayên naskirin. Cengîzxan Hiso yek ji wan kesan e, ku navê wî ji dezgeha nifûsê li bajarê Tirbêsipiyê re hatiye şandin, devera qeyda wî.

Di rêya vê fermanê re rêjîma Sûriyê rê li ber welatiyên Kurd ên li derve digire, ku belgeyên ji bo wan û malbatên wan pêwîst bi dest bixin. Cengîzxan Hiso vê yekê wekî “cezakirina çalakvanên kurd“ bi nav dike û dibêje: “Mirov dikare çi ji dewleteke polîsî hêvî bike? Ev dewlet ji mafê xwe dibîne ku biryarê li ser man û nemana welatiyên xwe bide. Biryara wê ya nû jî beşek ji çewisandina berdewam a Kurdan e.“ Kurdê 48-salî ji ber vê biryarê ecêbmayî namîne û eşkere dike ku ew ê guh nede vê biryarê û xebata xwe bidomîne. Hiso dibêje: “Kesên ku di warê siyasî û mafên mirovan de dixebitin, hesabê hertiştî dikin. Dewleta Sûriyê guh nade maf û rûmeta mirovî. Ew çi dike, bila bike.“

Bêtirî hezar kîlometrî bakurê Berlînê, li bakurî-rojhilatî Stockholm a paytexta Swêdê, li bajarê Vêsteros, Kamiran Haco dijî. Kurdê 59-salî heman derdê Cengîzxan Hiso dikişîne. Ew jî ji dîtina welatê xwe mehrûm e. Ev sêzdeh sal in Haco ne ku koçberî Swêdê bûye û cara dawî ku wî serdana Sûriyê kiribû, berî heft salan bû. Kamiran Haco wan rojan tîne bîra xwe û dibêje: “Min ti xweşî ji çûna xwe ya welêt nedît. Bêtirî hefteyekê ez mecbûr dibîm her roj serî li dezgehên ewlekariyê li Şamê bidim.“ Ji hingî ve Kamiran Haco ji ber tirsa girtinê biryar daye ku ta demeke nediyar neçe Sûriyê. Ew yek ji wan kesan e, ku navê wan di wan lîsteyan de ne, ku ji dezgehên nifûsê re hatine şandin.

Haco vê biryara dezgehên ewlekariyê yên rêjîma Sûriyê wek biryareke xwedî “asta herî nizim“ bi nav dike û dibêje: “Armanca sereke ya vê biryarê ew e ku sextê li ser çalakvanên Kurd pêk bîne û wan bitirsîne û bêdeng bike. Ev nîşanek e jî bo gavên mezintir.“ Siyasetvanê Kurd rêjîma Sûriyê wek rêjîmeke “paşdemayî“ bi nav dike, “ku tenê dikare qanûnên mîna xwe ecêb derxîne“. Ne dûr e ku gava bê ew be ku hikûmeta Sûriyê nasnameyan ji çalakvanên kurd bistîne û dest deyne ser malûmilkên wan. Tevî hin axaftinan di kolana kurdî de li ser vê babetê, lê ta niha tiştekî eşkere peyda nebûye. Ji ber ku biryara nû teze ye, ta niha encamên wê jî eşkere nebûne.

www.arsivakurd.org

3 caran bûye şampiyonê Almanya

# Xortekî Kurd ciwanan hînî Bodygardiyê dike

"Badygardê serkeftî ew e ku pêşiya hêza xwe, mêjiyê xwe bixebitîne, baş plan bike, hem sebir bike, hem jî bilezîne."

**Dilbixwîn Dara** Bonn

Li qehwexaneyek bajarê Bonn'ê, di dema vexwarina qehweyê de û di hevpeyvînek taybetî de, wî ji me re got ku hêza wî gelekî xurt e, ji ber vê yekê ew naxwaze şerê kesekî bike. Ew dikare bi lêdanekê û bi teknîkek taybetî kesê li hemberî xwe yan seqet bike yan jî bikuje.

Navê wî Semîr Omer e, 25 salî ye, Kurdekî ji rojavayê Kurdistanê, ji gundekî Efrînê ye.

Ew ji zaroktiya xwe de li Almanya dijî. Ew niha xwediyê studyoyek perwerdekirina ciwanan e, ew ciwanan hînî bodygardiyê, Kickboks, konvo û hunera xweparastinê dike.

Semîr niha nêzîkî 15 kesan perwerde dike, di nava wan de gelek Kurd jî hene, lê belê yên herî zêde Rûs in.

Semîr dibêje :"Kesên bêhtir giringiyê didin bedena xwe Rûs in. Ji zaroktiyê de bav û diyên wan, wan hînî vexwarina Vodkayê dikin. Bedena wan gelekî xurt dibe, hem mêr, hem jî jinên wan bedena xwe baş diparêzin."



Semîr Omer dixwaze heta temenê 50 saliyê jî li ser pîşeya xwe bimîne

Semîr Omer ji 11 saliya xwe de dest bi vê spora metirsîdar û xeter kiriye. Sedema destpêkirinê jî ew wiha tîne zimên: "Ez zarok bûm, zarokekî li min xist û ez birîndar kirim, ez giriyam, min çû li cem birayê xwe giliyê wî kir. Wî jî sîleyek li min xist û got biçe heyfa xwe hilîn. Piştre birayê min bi destê min girt û ez birim Kickbokx, di nava wan de yê herî biçûk ez bûm."

Semîr dibêje ku wî di destpêkê de gelekî lêdan xwar, gelekî birîndar bû û gelek caran ji bêvila wî xwîn hat.

Berî ku cihekî taybetî ji xwe re veke, Semîr li dîskoyan bodygard bû. Her wiha wî nêzîkî 2,5 salan dewlemendên Alman jî paraztine, heta bi wezîran, ew bi wan re digeriya û ew diparaztin. Ji bo paraztina wan kesayetiyên Alman, wî gelek caran jiyana xwe xistiye xeterê jî.

Semîr wiha berdewam dike: "Ez qet natirsim, tirsa min tenê ew e kesê li hember xwe bêşînim. Dizanî, çend xalên hessas di laşê mirov de hene, tenê bi tiliyekê jî dikarî di wan cihên hesas de kesê li hember xwe bêtesîr bikî. Ez dikarim xwe li hember 3-4 kesan jî biparêzim, dixwazî bila ew kes bi kêran jî bên min, dikarim wan bê tesîr bihêlim."

Semîr qebûl dike ku wî jî lêdan xwariye, lê belê ew dibêje ku dema wî lêdan xwariye haya wî ji wî tune bûye.

Kickboks, lîstikek şer e, şer û pevçûna kolanan, gelekî xeter e, kuştin jî têde heye. Xortê Kurd, Semîr li ser helwesta malbata xwe wiha dibêje: "Bêguman, hem diya min hem jî bavê min li dij bûn ku ez vî karî bikim, bi taybetî diya min gelekî ditirsiya ku tiştekî xerab bê sere min, ew her demê digiriya."

Ew niha ji vê sporê baş qezenc dike, li kêleka vî karê xwe ew di şîrketek ewlekariyê de wek Bodygard kar dike.

Semîr Omer ku bi boks û ji boksên xwe qezenc dike, dibêje: "Badygardê serkeftî ew e ku pêşiya hêza xwe, mêjiyê xwe bixebitîne, baş plan bike, hem sebir bike, hem jî bilezîne."

Niyeta Semîr Omer heye heta ku temenê wî bibe 50 sal jî ew her vî karî bike.

## Komela Amediyan li Bochumê vedibe

**Mehmet Sebatli** Bochum

Kurdên ji Amedê li Almanyayê dest bi damezrandina komeleya xwe dikin.




Amediyên ku li welatên Ewrûpayê dijîn amadekariyên damezirandina komeleya xwe bi dawî anîn û hefteya pêşiya me ji bo avakirina komeleyê kongreya yekemîn li dar dixin. Kongre wê li bajarê Almanyayê, Bochumê bê li darxistin.

Amadekarên komeleyê di banga civandina kongreya yekemîn de, bal kişandin ser wê yekê ku komeleya wan wê di navbera Amediyan û bajarê wan de bibe pir û wê Amediyên ku li welatên Ewrûpayê ji hevdu dûr dijîn, wan bîne cem hev.

Li ser komîteya amadekar, Örfi Pervane, ragihand ku wan hemû karên burokratîk bi dawî anîne û komeleya wan li gor Yasaya Komeleyan a Almanyayê bi navê "Diyar-Der" hatiye pejirandin. Pervane di berdewamiya axaftina xwe de bal kişand ku li Ewrûpayê ne tenê komeleyên bajaran, lê yên gundan jî hatine avakirin, lê heta niha komeleyek ku bajarekî Kurdistanê temsîl bike nehatiye avakirin "Bi rêya vê komeleyê emê karibin di navbera gelê me yê li derve û yê li welat de pirê ava bikin; salê carekî be jî emê bên cem hev, li ser pirsa 'ka em dikarin çi bikin?' gutûbêjan bikin û di nava xwe de alîkarî bicivînin, şevan li dar bixin." Pervane di dawiya ragihandina xwe de got ku ew tevlîbûna hemû Amediyên li Ewrûpayê dijîn, dixwazin û wê pêşniyazên mêvanan hêz bide xebata wan.

Di rojeva kongreyê de xalên wek hevdu nasîn, danasîna komeleyê, li ser program û xebatên wê gotûbêj û hilbijartina birêvebirinê heye. Kongreya ku wê roja 5'ê Hezîranê demjimêr 16:30'an de li Bochumê bê lidarxistin, wê li: Allestr.80 44793 Bochum, Avahiya IG Metalê Jahrhunderthaus de, bi şahiya muzîkê bê dawî kirin.

## Bavekî Buschido Kurd e

**Dilbixwîn Dara** Bonn

Dem bi dem em pê dihesin ku filan kesê navdar, filan siyasetvan, filan hunermend Kurd e. Ew kesên navûdeng dane û meşhûr bûne "heta kêr negihê hestî" Kurdbûna xwe eşkere nakin. Hinek kes hene ji ber parastina berjewendiyên xwe, hinek jî hene ji wan re qet ne giringe, Kurd bin yan na, bi gotinekê be jî behsa "Kurdbûna" xwe nakin.

Dema ku bazara "Xwe-Kurd-Dîtinê" çêbû, em ê bibînin gelek kes wê derkevin û eşkere bikin ku ew jî Kurd in. Ez vê nimûneyê ji bo Buschido nabêjim, rewşa wî bêguman cuda ye. Buschido ku di sala 1978 de li bajarê Bonnê ji dayîkeke Alman û bavekî Tunisî ji dayîk bûye, weke mezintirîn raper li Almanya tê naskirin û kesekî ku wî nas neke tune ye, eşkere kir ku zirbavê wî (mêrê diya wî) Kurd e.

Ev nehêniya ku heta niha nedihate zanîn, Buschido di programeke televizyona Almanî de bi zimanê xwe, dema ku behsa jiyana xwe û rojên bi êş yên wê jiyanê kir, got ku bavê wî Kurd e û ji Bakurê Kurdistanê ye. Buschido ku niha di nava raperên cîhanê de navekî naskirî ye û li Almanya yekemîne û ji vê hunera xwe bi milyonan qezenc kiriye û dike jî, her wiha gelekî dewlemend bû ye, di jiyana xwe de rojên gelekî tarî û azar derbas kirine. Lê Buschido ji bavê xwe yê rastîn bêhtir, zirbavê xwe yê Kurd nas dike.



Buschido ne ji bavê xwe yê Tunisî, lê ji zirvavê xwe yê Kurd hez dike

Navê wî yê rastîn Anîs Mohamed Youssef e. Dema ku ew 3 salî bû, bavê wî ku gelekî alkolîk bû û weke Buschido dibêje "ne ti bav bû" dev ji diya wî berdide. Ew her demê bi xemgînî behsa zaroktiya xwe dike. Ew ji ber ku dema ew zarok bûye bav û diya wî ji hev cuda bûne, diya wî hem bavîtî hem jî dayîktiyê jêre kiriye, ew bêhtir girêdayî diya xwe maye û bêbav mezin bûye.

Her çiqasî bavê wî Ayeş F. (61) ku bi eslê xwe Tunisî ye, bi serbilindî behsa kurê xwe dike û hemû albûmên wî li cem xwe parastibin jî, Buschido bi xwe ji ber ku wî ti qencî ji bavê xwe nedîtiye, ji wî ne razî ye û pir başî behsa bavê xwe nake. Ew dibêje "Ez ji bavê xwe nefret dikim". Ayeş F. dibêje, kurê wî jî weke wî ji însanan hez dike û bi hurmet nêzîkî kesên din dibe. Piştî ku bav û diya Buschido ji hev cuda dibin, diya wî bi mêrekî din re dimîne, ew jî Kurdekî ji Bakurê Kurdistanê bû ye. Buschido gotineke japonî ye, tê wateya "Rêya Şer"

www.arsivakurd.org



Di dawetên Mêrîsînê de, bi sedan kes dikevin milên hev

Xêliya ku li gundan davêtin ser serê bûkan, hêjî li Mêrsînê heye

# Ev der ne Amed e, Mêrsîn e!

**Bawer Çem** Mêrsîn



Li bajarê Mêrsînê yê Tirkiyeyê ku kurdan şaredariyek bi dest xistiye, hê jî dev ji orf û adetên Kurdî bernedane. Kurdên ku hînî dawetên salonê nebûne, li kolanê bi sedan kesî re govend digrin û destmala kesk û sor û zer dihejînin.

Mêrsîn yek ji bajarên Tirkiyê ye û li perava Deryaya Spî ye. Bajarê turîstîk Mêrsîn ku berê qet Kurd lê nedijiyan, ev 30 sal in ku weke nîvbajarê Kurdan tê nasîn. Li Mêrsînê hejmara Kurdan her ku diçe ji ya Tirkan zêdetir dibe. Wisa lê hatiye ku Kurdan (BDP) şaredariya navçeya herî mezin Akdenîzê bi dest xistine. Li bajarê Mêrsînê Kurd hemû di heman taxan de û di nava hev de dijîn. Li ser her banekî taxên Şevket Sumer, Çay, Çîlek, Yenî Hal, Yenî Pazar, Demîrtaş, Kurtalî mirov dikare tenûreke nanî bibîne. Ji ber ku nifûsa Kurdan zêde ye û rewşa wan a aborî xirab e, di şûna nanê firinê de nanê tenûrê tercîh dikin.





Kurdan li ser banên malên xwe yên li bajarê Mêrsînê, Tenûr çêkirine

Bi gotina şêniyê Şevket Sumerê Mele Mihyedîn (65) "ew ti caran hînî nanê firinê nebûne", bêhn û tama nanê tenûrê pir cuda ye.

### Zimanekî hevpar ava kirine

Yek ji şêniyan Faruk Bîlen yê salî 41 ku ji Şirnexê koçberî Mêrsînê kiriye, ji Rûdawê re diyar kir ku wan bi xwe re orf, adet û kevneşopiyên xwe jî anîne. Bîlen wiha axivî: "Evder Kurdistana biçûk e. Ew çawa ji Qibrisê re dibêjin welatê çêlik (yavru), Mêrsîn jî welatê çêlik a Kurdan e. Taxên me, lixwekirina me, xwarinên me, dawet û şînên me cuda ne. Di şîn û şahiyên me Kurdan de li vir jî bi hezaran kes top dibin. Ger di dawetek de ji 200 kesî zêdetir nekevin milê hev û şemamê, bavnekar, cîda, dizo, eyşokê nelîzin, em ji wê dawetê re nabêjin dawet." Ji ber ku di her taxeke Mêrsînê de Kurdên ji Colemêrg, Amed, Bedlîs, Wan, Sêrt, Mêrdîn, Şirnex û bajarên din ên Kurdan bûne cîranê hev, hemû ji devoka hev fêm dikin û zimanekî hevpar ê Kurdî derketiye holê. Ji şêniyên taxa Şevket Sumerê, Gulistan Aktan a 35 salî ku ji Sêrtê koçberî Mêrsînê bûne, rewşa Mêrsînê wiha vedibêje: "Mirov ji serê sibehê heta êvarê li van taxan bigere, rastê Tirkekî yan jî nijadeke din nayê. Em hemû Kurd in, qedera me hemûyan yek e. Em ji hev pir hez dikin, li hev xwedî derdikevin. Dema dibe êvar, em hemû li ber Roj TV, Kurdistan TV dixwazin nûçeyên ji Bakur û Başûrê Kurdistanê hîn bibin."

### Mînîbûsên wan jî kesk, sor û zer in

Ji şêniyekî taxa Demîrtaşê, Munaver Yaranci jî bal kişand li ser xaleke balkêş. Li gorî Yaranci, mînîbûsên ku tên taxên Kurdan ji rengên ala Kurdistanê pêk tên. Yaranci, wiha axivî: "Kurdên me piranî li Çîlek, Şevket Sumer, Kurtalî û Demîrtaş rûdinên. Mînûbûsên Çîlekê zer, yên Şevket Sumer sor, yên Demîrtaş kesk û yên Kurtalî jî spî ne. Ji xwe ala Kurdistanê jî ji 4 rengan pêk tê. Ji ber ku gelek jinên Kurd xwendin, nivîsandin nizanin û hînê Kurdî nebûne, dema tên sûkê, ji rengên mînîbûsan dizanin ku kîjan mînîbûs diçe kîjan taxê. Ji ber vê yekê qet wenda nabin."

### Her dawetek dişibe ekîbeke folklorê

Li bajêr hemû welatiyên Kurd ên ji bajarên cuda hînê lîstikên hev ên dawetê bûne. Di dawetan de herî zêde delîlo, sêgavî, cîda, dizo, bavnekar, mamir, eyşokê û şemamê tê lîstin. Şirnexî û Colemêrgî zêdetir bi xiftan, şal û şapikan tevlî dawetan dibin. Lê di demên dawî de Kurdên ji bajarên din jî hîn bûne di dawetên xwe de xiftan, şal û şapik li xwe dikin. Her çiqas bûk bûkaniya spî li xwe bikin jî xêliya ku li gundan davêtin ser serê bûkan hê jî di dawetên Mêrsînê de tên bikaranîn. Ji ber keçên ku xiftan li xwe dikin, her dawetek weke şahiya Newrozê dixuye. Tişta herî balkêş ew e kesê/a di sergovendê de muheqeq destmala kesk û sor û zer dihejîne. Hemû destmalên sergo- vendê ji rengên ala Kurdistanê pêk tên.

Ekîba tembûrê jî hemû sitranên xwe bi Kurdî dibêjin. Yek ji şêniyên Demîrtaşê Abdulvahap Gultekîn, vê rewşê wiha rave dike: "Em hê jî bi rêbazên gundane diçin. Dawetên me roja şemiyê piştî nîvro dest pê dikin û heta yekşemê êvarê didome. Roja yekşemê nîvro, dema bûk tînin li ser banî xwarin tê dayîn. Xwarina me jî wekî ya gundan hê jî savar, birinc û goşt e. Lê em hinek modern bûne. Êdî di şûna teyfikan (tabak) de em di tablîotan de xwarin didin. Em ji bo xwarinê jî aşpêş digrin." Yek ji tişta ku bala mirov dikişîne ev e; Şaredarê BDP'î yê Akdenîza Mêrsînê, Fazul Turk, tevlî hemû şîn û şahiyan dibe. Piştî ku di dawetê de serek govend gerand vediqete û ji bo daweteke din bi rê dikeve. Hatina



Dema ku 5. Dadgeha Cezayê Giran a Amedê 166 sal û 6 meh ceza li Midûrê Karên Nivîsê û Berpirsiyarê Rojnameya **Azadiya Welat** yê berê, Vedat Kursun, birî, gelo haya xwendevanê Azadiya Welat ji vê hebû? Me ev wêne li Sêrtê kişand. Xalê me, çavên xwe hînî xwendina tîpên Kurdî dike.

# Hêvî ji “Nameyên Eşref” mezintir bûn

**Ji bo dîtina Namekanî Eşref bendewariyek zêde hebû, lê dereng ketina wê hişt temaşevan jê sar bibin.**

Sara Hacî Silêmanî

Bi propagandayek germ û balkêş hat û demên pêşkêşkirina xwe li ba temaşevanan tomar kir, lê “Namekanî Eşref” (Nameyên Eşref) li gor hinek bîneran ne ew drama bû ku wan çaverê dikir. Alîkarê derhênerê dramayê jî dibêje, fîlmên biyanî yên dublajkirî û îmkanên me yên kêm bûn sedem ku em nikaribin karekî ku ji sedî 100 bi dilê xelkê be, pêşkêş bikin.

Heta ku fîlmên biyanî yên dublajkirî li ser ekranên Kurdî bên pêşkêşkirin, Aram Kerîm qet li pêş “Namekanî Eşref” û ti dramayek Kurdî de na rune. Ji xeynî bihêziya dramên dublajkirî, bi baweriya Aram dema pexşandina dramên Kurdî pir dereng e: “Raste di Namekanî Eşref de akterên bihêz hene, lê heta dramên biyanî yên dublajkirî hene, berê xwe nadim fîlmên Kurdî.”

Li gor beşek ji bînerên Namekanî Eşref, drama ewqasî ne bihêz e ku wan di reklamên destpêkê de dîtin, di heman demê de jî rexne li dema pexşandina wê digrin. Lê bi nerîna beşekî din, drama pir bedew e. Dîdar Kerîm xwendekarê zanîngeha Silêmaniyê ye û dibêje: “Ew dengvedana mezin ku dihat çaverêkirin nebû, xelkê bêtir berê xwe dida reklamên drama, lê drama ne li gor hêviyên xelkê derket.” Dîdar dibêje dibe ku asayî be li ba min heta derengî şevê rûnim û berê xwe bidim Namekanî Eşref lê: “Bînerê asayî heta derengî şevê ji bo dramayek wiha hişyar namîne.”

Mahîr Hesen, yek ji akterên serekî yê zincîre dramaya Namekanî Eşref e û eşkere dike ku ji ber hin sedeman xelk ji drama wan dilsar bûye: “Drama pir dereng ket, reklamek mezin jê re hat kirin, dema pêşandana wê dereng e û dûbarebûna pexşa wê, veqetîn li ba bîneran dirust dibe.” Mahîr Hesen ku di derbarê nameya rola xwe de dibêje: “Em dixwazin ji xelkê re bibêjin tika ye ji Eşref dûr bikevin û xwe jê biparêzin ji ber Eşref û hevşanên xwe dixwazin li ser maf û keda we bigihin desthilatê û berjewendiyên xwe cîbicîh bikin.”

Bi baweriya Beyan Zerîfî ku akterek din a Namekanî Eşref e, hêzû ye biryar li ser bihêzî yan lawaziya dramaya wan bê girtin û dibêje divê drama bidawî bibe û êdî biryar bê girtin: “ Ji bo dîtina Namekanî Eşref bendewariyek zêde hebû , lê dereng ketina wê hişt temaşevan jê sar bibin.”

Piştî reklamek zêde, di 27’ê Adarê de xeleka yekem ji drama Namekanî Eşref ku behsa dîrokek dûr dike û şîretkariyê lixwe digre, li ser ekrana Kurdistan-TV hat weşandin. Drama ji 26 xelekan pêk tê û nêzîkî 40 hezar Dolaran lê hatine xerckirin.

Alîkarê derhêner, Bekir Mistefa pirsgirêkek Namekanî Eşref bi kêmbûna îmkanên darayî ve girêdide û pêdagiriyê li ser wê yekê dike ku fîlm û dramên biyanî yên dublajkirî bandorê li ser bînerê Kurd dike: “Loma wek ku tê xwestin bînerên Kurd pêşwaziyê li dramayên Kurdî nakin.” Bekir Mistefa dibêje, ji ber van sedeman Namekanî Eşref nekarî berê temaşevanan ber bi xwe ve rabikşîne: “Em behsa doh, îro û sibe dikin. Dema weşandinê jî bandorê dike, ger di demek zûtir de bihata pexşkirin wê baştir bûya.”

Mistefa diyar kir ku dema drama wan amade bû, birin gelek televizyonan lê “Cara yekem me bir ji bo Kurdstan lê wan drama ji me wernegirt, lê dûre dema dîtin poşman bûn.”


Dîmenek ji drama Namekanî Eşref


Dîmenek ji drama Namekanî Eşref


Dîmenek ji drama Namekanî Eşref


Zanîngeha Artukliyê li Mêrdînê

Cîgirê Rektorê Zanîngeha Mêrdînê Prof. Dr. Kadri Yildirim:

# Eger ku bi zanebûn astengan dernexin...

**Mêrdîn (Rûdaw) –** Di dawiya sala borî de biryar hat dayîn ku Beşa Zimanê Kurdî li Zanîngeha Mêrdînê bê avakirin. Diderbarê Beşa Zimanê Kurdî de Rûdawê çend pirsên xwe bi Kurdî ji Cîgirê Rektorê Zanîngeha Artuklû ya Mêrdînê Prof. Dr. Kadrî Yildirim kirin û wî jî pirs bi Kurdî bersivandin.


Prof. Dr. Kadri Yildirim

**Zanîngeha we daxwaza vebûna Kurdolojiyê ji Saziya Bilind ya Hîndekariyê (YOK) kiribû?**

Beriya Kurdolojiyê, di bin qada lîsansê de daxwaza Beşa Zimanê Kurdî hatibû kirin lê ev nehatibû qebûlkirin. Paşê wek Enstituya Kurdolojiyê hatibû daxwaz kirin, ew jî nehat qebûl kirin. Daxwaza me herî dawî bi navê Ziman û Çanda Kurdî hate erêkirin. Beşek din jî Ziman û Çanda Suryanî, ya din jî Ziman û Çanda Erebî ye. Lê di biniya beşê sereke yê Ziman û Çanda Kurdî de em ê cih bidin beşê Ziman û Edebiyata Kurdî. Bi vî awayî hetanî em bikaribin, hetanî ji destê me bê em ê ziman û edebiya Kurdî bi pêş bixin.

**YOK’ê sedema erênekirina Kurdolojiyê wek nebûna kadroyan dabû destnîşan kirin. Kêmasiyek wilo heye?**

Na. Eger ku bipirsiya, ewil lêkolînek zanîstî bikira û bigota ka di vî warî de kesê ku hatine gîhaştin, perwerde kirin, yê ku karibe ji bin vî karî derkevin hene yan tunene, wan jî wê bidîta ku bi sedan kesên ku bikaribin vî karî bikin hebûn û hene jî.

**Hûn niha çi xebatan dikin?**

Eger ku pê re bigihije, di miha Îlonê de, eger ku negihije jî di miha Sibatê de em ê xwendekarên mastirê bigirin. Dema dersxwendinê salek e. Piştî ku xwendekaran bi awayekî zanistî ders girtin, em ê mijarên tezan bidin wan. Li ser ziman, çand, dîrok û edebiyata Kurdan kî bixwaze di kîjan warî de tezek zanistî, akademîk amade bike em ê bi vî hawî derfetan bidin wan û heta ji destê me bê em ê ji ziman û çand, huner û dîroka Kurdî re bibin xizmetkar.

**Hûnê bikaribin vê xizmetê bikin?**

Di serî de hinek tengasî û kêmasî hebin jî çiqas here ew ê xwe tekûztir û temamtir bike. Û ez bawer dikim, eger ku bi zanebûn astengan dernexin pêşiya me, eger ku pêşiya me vekirî bihêlin, em ê di dimek kurt de bigihijîn armanca xwe.

**Ji bo pêşerojê projeyên we hene?**

Projeya me ya herî mezin, di warê ziman, edebiyat, huner û çanda Kurdî de emê lêkolîn û xebatên akademîk bi wan xwendkarên me ên mastirê bidin kirin. Her kes wê li gorî xwe cihekî, mijarekê bigire, dawiya dawî wek arşîvek wê bê çêkirin û ji vê arşîvê wê gelek tiştên ku heta niha veşartî mane, em hêvî dikin wê derkevin holê.

**Astengiyên we hene?**

Ta niha ti astengî dernexistine.

**Spas**

Ez jî spas dikim.

**Hevpeyvîn: Sengul Ogur**

Ji bo bi keçeke Kurd re bizewice

# Bû Musilman û xwe sinet kir

## Di kampeka peneban gihiştin hev: Cemîla ji ber penaxwaziyê, Stefan jî ji ber ku mala xwe winda kiribû

**Nurettin AKAD** Torhout

Kî dibêje ji bo hezkirinê ziman pêwîst e, ne rast gotiye. Ji ber ku ji bo dil ziman ne pêwîst e, ji ber ku zimanê evînê dil bi xwe ye. Weke ku gelek caran hatiye gotin, evîn sînoran nas nake ji ber ku zimanê evînê yek e. Yek ji mînakên evînek wiha di navbêra keçek Kurd û xortekî Belçîkî de derbas bû. Gava ku wan biryar da bi hev re bizewicin, belkî jî yek gotin bi devkî ji hev fam nedikirin. Lê belê wan bi zimanê dil û telepatiyê ji hev fam kirin. Kedek bê hempa bi hev re xerç kirin. Di dawiya dawî de piştî têkoşînek dûr û dirêj wan peymana xwe ya zewacê mohr kir. Me çîroka wan hêjayî nivîsandinê dît û loma em çûn bûn mêvanên Cemîla Arslan û Stefan Puype. Me bi wan re hevpeyvîn kir, wan çîroka xwe ji me re vegot û me jî nivîsand. Di encamê de çîrokek gelekî balkêş derket holê ku tiştek yekane bû. Her çend çîroka wan gelekî dirêj bû jî, me hewil da bi xetên qalind ji bo xwendewanên Rûdawê binivîsînin.

Hertişt bi tesadûfek îlahî dest pê kir. Cemîla Arslan (32 salî) ji ber sedemên însanî hatibû Belçîkayê û di yek ji kampên Belçîkayê de dima. Ji bilî birayekî wê yê li Brûkselê dixebitî ti kesê wê li vî welatî tinebû. Di kampa penaberan de ku peyvek tenê yê zimanên Belçîkî jî nizanîbû, diviyabû her roj li otobûsê, trênê siwar be û here dibistanê. Bi ser vî halî de bi nexweşiyek giran jî ketibû.



Cemîla Arslan û Stefan Puype

### Ji bo hezkirinê ziman pêwîst nake

Tam di vê demê de Stefan Puype (38 salî) ji ber sedemên tendurustî dikeve nexweşxaneyê û emeliyat dibe. Gava ku ji nexweşxaneyê derdikeve, xaniyê tê de dima winda dike. Ji ber ku xwediyê xanî apartmanê bi kirê dide kesekî din, loma ew neçar dimîne xwe bavêje sosyalê. Sosyal bi awayekî demborî wî di kampa penaberan de bi cîh dike. Stefan di vê demê de carekê ji aliyê sosyalê ve alîkarî jê tê xwestin ku bi Cemîla re ji bo nîşandana otobûs û saetên trênan pê re here dibistanê. Stefan gava bi Cemîla re diçe dibistanê, ji mahsûmî û dilpakiya Cemîla bi tesîr dibe û heta ku Cemîla ji dibistanê derkeve li bendî dimîne. Lê Stefan êdî berdewam dike, wek asîstanekî di her pirsgirêkên Cemîla de alîkariya wê dike. Lê belê di vir de pirsgirêkek gelekî girîng heye: ji hevfamkirin. Gava Cemîla dixwaze tiştekî ji Stefan re bêje, destpêkê li birayê xwe Hekîm digere, ew jî bi Almanî ji Stefan re dibêje. Stefan jî pirsgirêkê tê digîje.

Di kampa penaberan de ji ber bêxemiya doktorê kampê, Cemîla ji dermanên ku distîne bi nexweşiyek xiraptir dikeve. Loma Stefan wê dibe cem doktorê xwe yê malê û di vê çarçoveyê de wê radikin nexweşxaneyê. Cemîla nêzî 4 mehan divê dermanan bistîne. Stefan di van 4 mehan de, her roj her saeta ku divê Cemîla dermanê xwe bixwe, alîkariya wê dike û dermanên wê didê. Cemîla jî hewil dide bi hêza xwe xwarina wî amade dike. Ev yek di navbêra wan de tesîrek bi kedê tê avakirin çêdike. Girêdana navbêra wan, dostaniya wan û hevaltiya wan xurttir dibe.

### Stefan ji bo bi Cemîla re bizewice xwe sinet kir

Ew biryarê didin bizewicin. Malbata Cemîla nêvî li welatên Ewropayê û nêvî jî li welêt in. Hinek xizmên wê yên dûr li bajarê Haseltê hene. Li gorî şêwra bi malbatê tê kirin, malbat bi şertê ku li gorî adetên Kurdî çêbibe, di zewaca wan de ti astengiyê nabînin. Li gorî isûla Kurdî divê Stefan bibe misilman. Stefan bi xwe sûnnetkirinê dest pê dike. Ew bi xwe diçe nexweşxaneyê termînê distîne û xwe dide sinnetkirin. Dûre bi alîkariya wergerekî destpêkê li cem melle dizewicin. Ew eşheda xwe bi felemanî tîne û werger vê yekê werdigerîne Kurdî.

Lê belê zewaca wan li gorî şerîetê çê dibe, lê zewaca fermî gelekî zehmet e. Cemîla ti kaxizên wê tine. Ne nasname û ne jî pasaporta wê heye, kaxizên Tirkan jî li cem tine. Gava ku diçin konsolosxaneya Tirkan ji bo nasnameya Tirkan a Cemîla derxînin, hingî pê dihesin ku gava Cemîla li Brûkselê îfade daye Komîseriyata Penaberiyê paşnavê xwe di dewsa Arslan de, Aslan dide û tarîxa rojbûna xwe ji ber ku ne di jibera wê de ye, tarîxek din dide. Û niha ev agahî hevûdin nagirin ku nasnameya wê were derxistin. Di encamê de ew neçar dimînin bi belgeyên ku di îfadeyê de daye, `peymannameya bi hev re jiyanê` (statuyek wek zewacê ye) çêdikin heta ku mafê mayîna wê ya li Belçîka tê naskirin. Hingî ew bi çîrokek dûr û dirêj a name û serlêdanan paşnavê Cemîla û rojbûna wê ya şaş tê sererastkirin. Piştî 5 salan ew êdî pasaporta Tirkan a Cemîla derdixin û zewaca xwe ya fermî piştî 5 salan çêdikin.

### "Kurdên li vir zêdetir Tirkî xeber didin"

Cemîla û Stefan niha li Torhout'ê dimînin. Li ser pirsa me ya zimanê Kurdî, Stefan daxuyaniyek gelekî balkêş da. Wî diyar kir ku Kurd bi gelemperî Tirkî xeber didin û ew vê yekê gelekî sosret dibîne. Naxwe wî xwestiye ku Kurdî hîn bibe lê Kurd bi xwe zimanê xwe baş naexivin. Cemîla hinekî bûye Belçîkî û Stefan jî hinekî bûye Kurd. Ew her wiha ji vê yekê gelekî bextiyar û razî ne. Ji me re jî dimîne ku em di jiyana wan a ji niha û pê de bextiyarî û sihetê bixwazin.



Sevda Şafîk

## Şerê ji bona çêlekê

Heman çîrok tên guhê me. Ev bû demek mijarên nexweş, xeberên tirajîk dibin manşetên rojnamên Kurd û Tirkan. Xeberên hevdû kuştinê, xeberên destdirêjiya li dijî zarok û pîrekan, xeberên hevdû xwarina malbat û eşîrên Kurdan.

Roja buhurî jî carek din ji ber ku çêlek ket nava genim du malbatên Kurd bihev çûn , 4 kes hatin kuştin, 11 jî birîndar. Bi sedê salane ev çîrokên hanê di jiyana gelê me de dubare û çend bare dibin.Bê guman ji bona dîroka derbasbûyî mirov nikare zêde tiştekî bêje , di dîroka her milletî de şopên paşverûtî hene. Lê bi rastî jiyandina van bûyeran di sedsala bîst û yekan de ne rewşek normal e. Li welatê me jiyandina van rastiyan ji bo tevahiya mirovatiyê rûreşiyek mezine.

Gelo berpirsên van bûyeran kî ne, çima li Kurdistanê evqasî xerabbûn û jihevketina civakî û moral kûr bûye?

Sala derbazbûyî li gundekî Mêrdînê di şahiyek zewacê de bi dehan mirov hatin qetilkirin. Çend rojan ev bûyer bû manşet, civaka Kurd hindekî hat teşhîrkirin û paşê hertişt bê deng bû. Beriya çend rojên berê li Sêrtê çend caran zarok bûn armanca destdirêjiyên ne mirovane. Xwestin vê bûyerê jî bi heman awayî veşêrin.

Mirov dikare bêje rojane ev bûyer çê dibin, bi dehan mirov dibin qurbana paşverûtiya civakê. Lê kes berpirsiyariya van karan nagire ser xwe.Herdema rayedarek Tirk daxive, şanaziyê bi 80 sal dîroka komara xwe dike, şanaziyê bi dîroka Tirkan dike. Gelo qey ne pêdiviye mirov bipirse vê komara ku sibê heya êvarî hûn şanazî pê dikin, ji xeynî hevdukuştin û paşverûtiyê çi daye vî gelî? Erê ne hûn xwe dikin xwediyê hemû pêşveçûnên cîhana Îslamê? Gelo ev milletê ku şeşsed sal e di bin destê we de ye, çima hûn ji xwe napirsin me çi pêşveçûn di nava vî gelî de çêkir? Ger ku hebekî wîjdan û edaleta we hebe hûnê berpirsiyariya van gemariyan jî bigirn ser xwe!! Lê xuyaye hûn ji tuxmê melekan e, karên baş hemû yên we ne û yên xerab jî yên şeytên in. Lê divê hesabê van gemariyên hanê ji komara Tirkî bê xwestin çunkî 80 sal in tenê ev ji gelê Kurd re qezenc kirine.

Dema wê hatiye mirov pirsek weha jî ji Bizava Azadixaza Kurd bike:

Gelo em xwe çawa dibînin? Berhemên 80 salên komarê ev in, lê berhemên zêdeyî 40 salên tekoşîna Kurdan divê çibe? Gelo ma 40 sal ji bona me jî ne bes in ku em gelê xwe ji hevdu kuştinê, ji hevdu xwarinê xelas bikin? Divê berpisên Kurdan jî cardin kumê xwe li ber xwe deynin û bêjin: "Em jî 40 sal in xebatê dikin, lê hîna me nekarî em gelê xwe ji gemara çaxên navîn rizgar bikîn. Ev jî tirajediya tekoşîna me ye."

Şaredarê Sûrê, Abdullah Demîrbaş:

# Em ne desthilatdar, lê xizmetkarên gelê xwe ne

## Cîhan wek baxçê gulan e, herkes bi rengê xwe, bi xweşikbûna xwe û bi nasnameya xwe bi hevre bijîn

Amed (Rûdaw) - Şaredarê Surê, Abdullah Demirbaş, ku di çarçoveya operasyona li hemberî DTP'ê de hatibû binçavkirin û girtin, ji ber nexweşiya wî gihîştiye astek krîtîk, piştî 4 meh û nîvan ji Girtîgeha Tîpa D ya Amedê tehliye bû. Demîrbaş li nexweşxaneya Fakûlte ya Dicleyê bersiva pirsên Rûdawê da.

**Destpêkê li ser navê xwendevanên me ez dibêjim derbasbûyî be, gelo niha tenduristiya we çawa ye?**
Gelek spas. Niha ez hê li nexeşxanê dimînim, ber bi başiyê ve diçim. Hefteya pêşiya me ezê herim Enqerê, Zanîngeha Hacetepe, li ser pirsgirêka xwe ya tenduristî bi rawestim. Ez hêvîdarim ku ber bi başiyê ve herim.

**Birêz Demîrbaş, berî niha bi 6 mehan ji bo nerîn û daxuyaniyan hûn hatin binçavkirin. Ev siyaseta ku tê meşandin hûn çawa dinirxînin?**
Yekem AKP dixwaze ji Kurdan re siyaseta demokratik qedexe bike. Duyemîn, 28'î Adarê li Tirkiyê hilbijartin çêbûn. Kurd di van hilbijartinan de di herêma xwe de, di şaredariyan de bi pêş ketin. Ev serkeftin û pêşketin li zora AKP'ê çû. Li ser vê bingehê AKP'ê operasyonek ji bo tinekirina Kurdan çêkir. Qedexekirina siyasetê kir armanc. Nêzîkî 1500 siyasetmedar, rêvebirên tevgera demokratîk, berpirsên şaredaran xistin girtîgehan da ku hereketê bêyî xwedî û bêyî rêvebir bihêlin.
AKP dibêje ji Kurdan re siyaset qedexeye, an jî hûnê rê û rêbazên din bişopînin. Ev rêbaz ji bo Kurdan çi nîşan dide. Yanî îro dema siyasetmedaran bigre, destê wan kelepçe bike û wêneyên wan li cîhanê belav bike, mana vê ev e; dibêjin eger Kurd siyasetê bikin dawiya wê ev e. An teslîm bibin an jî herin çiya, hûn çi bikin bikin. Ez hêvîdarim ku ev daxwaza wan pêk neyê.
Ev 13 meh in, nêzîkî 180 kes in, hîn daxwaznameya sawcî ji bo wan diyar ne bûye ku sûcê wan çiye. Çi ceza dixwazin ne diyar e. Em qedexekirina li ser siyaseta Kurd rast nabînin.

### "Şaredariya pirzimanî"

**Ji hêlekê ve çareseriya pirsgirêka Kurd tê nîqaşkirin û ji hêlekê ve mirovên demokrat tên binçavkirin...**
Aniha vekirina siyasetê dibêjin, vekirina demokrasî dibêjin, lê kesên demokrat tên binçavkirin û tên qirkirin. Li Tirkiyê dibêjin ji bo Romenan rêdan "Romen açilimi", lê operasyon li hemberî Romenan tên kirin. Ji bo rêdanê em helbestvanan-hunermendan dicivînin, piştre hunermend tên girtin, mînak Tarkan. Ev hikûmet ji kê re bêje "Rêdana Demokratîk", li ser serê wan operasyon çêdibe. AKP ji bo zarokên ku hatine girtin 3 mehan di meclîsa xwe de nîqaşê dike. Tiştê ku tê hesabê wê, ji bo makezagonê û xelandinê wê di cîh de tiştan dike. Lê dibêje zarokan jî ezê we ji girtîgehê derxim û hîna gav ne avêtine. Wê rojê li girtîgeha Amedê zarokan serî hilda. Ku bixwaze dikare di nava 15 rojan de qanûna bingehîn biguherîne, lê ji bo zarokan kare 3 mehan bisekinîne. Ev durûtiyek mezin e.



Dost û hevalên Demîrbaş ew bi gulan pêşwazî kirin

**"Di qanûna fermî de dibêjin "yek ziman, yek nasname, yek netew." Em dibêjin li Tirkiyê yek ziman, yek netew, yek ol nîne. Em dibêjin "pir zimanî" heye, pir netew heye, pir olî heye. Armanca me em dibêjin bila herkes bi nasnameya xwe di welatek azad de bi hev re bijîn."**



Abdullah Demîrbaş diyariyek pêşkeşî Musteşarê Siyasî yê Delegasyona Tirkiyeyê li YE'yê Dîego Melloda, ku piştî serbestberdana Demîrbaş serdana wî kiribû, kir.

**Bêyî BDP, gelo şansê AKP'ê heye ku pirsgirêka Kurd çareser bike?**
Na, ti şansê AKP'ê di çareserbûna pirsgirêkê de tune ye. Eger AKP demokrasî û pêşerojek xweş dixwaze, pêwîste rastiya BDP'ê bibîne. Pêwîste dan û standinan li gel BDP'ê çêbike, nerîn û daxuyaniyên BDP'ê di ber çavan re derbas bike. AKP pêwîste bibîne ku BDP dengê gelê Kurd e û gerek lê guhdar bike. Ne ku çav û guhê xwe bigre.

**Birêz Demîrbaş, drûşma şaredariya we "Şaredariya pir zimanî"bû, armanca we çi bû?**
Niha li Tirkiyê bi zimanê Kurdî, bi zimanê gel xizmet qedexe ye. Di qanûna fermî de dibêjin "yek ziman, yek nasname, yek netew", em dibêjin li Tirkiyê yek ziman, yek netew, yek ol nîne. Em dibêjin "pir zimanî" heye, pir netew heye, pir olî heye. Armanca me em dibêjin bila herkes bi nasnameya xwe di welatek azad de bi hev re bijîn.

**"Her şev çîrokek, her malek dibistanek"**

**Navenda Çanda Asûriyan a li Stockholmê, ji ber xizmet û nêzîkiya we li Asûriyan, hûn layiqî Xelata Çanda Asûriyan dît. Ev xelat ji bo we tê çi wateyê?**
Ez bawerim ramana vê ya yekemîn piştgiriya gelên bindest e. Duyemîn di çand û nasnameya bindestan de em piştgirî digrin. Gelê Suryanî bi vê xelatê wefa nîşan daye. Em dibêjin em gelekî bindest in lê pêwîst e em jî li çand û olên bindest xwedî derkevin. Min ji bo Suryanî, Ermenî, Kildanî û ji bo Erebî xebat meşand. Em dibêjin ji bo herkesî demokrasî, lê ne tenê ji bo me. Eger em azadî dixwazin, pêwîste em ji bo tevayî bixwazin û bixebitin. Ji ber niha di heremê de em serdest in, em ti car naxwazin em Kurd bibin desthilatdar û gelên din bibin bindest. Kîjan netew bibe bila bibe, Rûm, Suryanî, Kildanî, Ermenî û Ereb, em çiqas ji xwe re dixwazin em ji bo wan jî dixwazin.

**Başe wateya perwerdeya Kurdî ji bo we çi ye?**
Tê zanîn ku ziman nasname û hebûna mirovan e. Me di şaredariya xwe de dest pê kir, "Her şev çîrokek, Her malek dibistanek". Armanca me ku malbat bi pêwîstiya zimanê dayikê bihisin û zarokê xwe bi zimanê Kurdî fêr bikin. Me bangewaziya xwe kir, Mamoste Medya mala xwe kir dibistan û niha 27 şagirtên wê hene.

**Wateya xwe çi ye?**
Her şev zarok, bav û dayik bên cem hevdu û bi Kurdî çîrokan bixwînin.
Têkiliya dayik, bav û zarok di bingeha malbatî û ji hevdu nêz de nasandin xurt dibe. Bi zimanê xwe perwerde bibin. Çîrok di perwerdeya ziman de gelek giring e. Em bi çîrokên dayikên xwe mezin bûne, bi lorikên wan razane.
Em dibejin eger yek zimanê xwe wenda bike, yek nasnameya xwe wenda dike. Li dijî asîmîlasyonê her kes li zimanê xwe xwedî derkeve.

### Borî û dahatû hevdu bibînin

**Rêya Demîrbaş niha bi ku de diçe?**
Rêka min ronî ye. Ji bo mafê mirovan û xizmeta gelan ezê ber bi demokrasî û azadiyê ve biçim. Çiyî me heye, nasname, ol û bawerî. Pêwîst e em xebata xwe dewlemendtir û ferehtir bikin. Amed bajarekî dîrokî ye, pêwîst e em wê dîrokê ronî bikin. Em li bajarê Amedê borî û dahatûyê derxînin holê. Pêwîst e em dîroka xwe nas bikin. Li Amedê 33 medeniyet û şaristanî hene. Pêwîst e em wan derxînin.
Dahatûya me jî zarok in. Pêwîst e zarokên me jî di jiyanek azad û demokratîk de bijîn. Ez dibêjim dîrok û zarok, an jî borî û dahatû, pêwîste di aşitiyê de bijîn.

**Gelek sipas, tiştekî ku hûn di dawiyê de bêjin?**
Ji bo azadkirina min, ji bo tenduristiya min kê piştgirî dabe, ez silav û rêzên xwe ji wan re diyar dikim. Gel gelek bi rûmet e, gelek bi qîmet e. Em zarokên vî gelî ne û em ê di xizmeta gelê xwe de xebata xwe berdewam bikin. Em ne desthilatdarên vî gelî ne, em xizmetkarên gelê xwe ne. Qelenê xizmetê giran e, lê belê em ê ji bo azadî, demokrasî û aştiyê rêka xwe berdewam bikin. Ez hêvîdarim ku hevalên me yên girtî zû azad bibin.
Cîhan wek baxçê gulan e, herkes bi rengê xwe, bi xweşikbûna xwe û bi nasnameya xwe bi hevre bijîn.

Hevpeyvîn: Medya Denîz

www.arşivakurd.org




Raporta salane ya Amnesty International:

# Li Herêma Kurdistanê girtinên keyfî û îşkence pêk tên

**Sîrwan H. Berko** Berlîn

Di raporta xwe ya salane ya nû de Amnesty International agahiyên xemgîn eşkere dike: Li 111 dewletan welatî tên îşkencekirin û rûbirûyî zordariyê tên; li 159 dewletan mafê mirovan tên binpêkirin; li 96 welatan azadiya derbirînê tê binpêkirin; li 48 dewletan de girtiyên siyasî yên aştîxwaz di zîndanan de ne; li 55 dewletan girtî rastî dadkirinên nedadmend tên. Çendîn Herêma Kurdistanê ne dewlet e jî, lê di beşê Îraqê de ciyek taybetî ji bo wê hatiye terxankirin. Rêxistina mafên mirovan a navnetewî dinivîse ku "Di meha Nîsanê de serokwezîrê hikûmeta herêmî ya kurdî, ji endamên şandeke Amnesyt International re diyar kir ku wî bi xwe ferman daye hêzên Asayîş ên hikûmeta herêmê û dezgehên din ku li gor pîvanên mafên mirovan ên ji aliyê Amnesty International ve pêşniyazkirî tevbigerin. Wî herwiha diyar kir ku ew ê li ser bixebite ku erkê berpirsyariyê yên Asayîşan misoger bike. Herwiha hat diyarkirin ku biryara tedbîrên konkrêt ji bo rêlibergirtina "kuştinên namûsê" û kiryarên tundûtujî yên din li dijî jinan hatiye stendin. Tevî van sozan û baştirbûna rewşa mafên mirovan li Herêma Kurdistanê di sala borî de jî dîsa bûyerên girtinên keyfî û herwiha îşkence û zordarî bi taybetî ji aliyê dezgehên îstixbaratê yên KDP û PUK hatin ragihandin. Li endamên Goran û rojnamevanên bêalî, ku hikûmeta herêmê û berpirsyarên bilind rexne dikirin, gef hatin xwarin û li dijî hinekan êrîş hatin kirin."

**Azadiya Çapemeniyê**

"Tevî sazkirina qanûneke çapemeniyê ya lîberal di sala 2008'an de rojnamevanên ku ji bo alavên ragihandinê yên serbixwe kar dikirin, berdewam rastî dozên cezayê dihatin, ku wiha dixuye ew ji ber armancên siyasî pêk dihatin. Hin ji wan bûn goriyên êrîşên ji aliyê kesên medenî, ku tê texmînkirin girêdana wan bi dezgehên istixbaratê, Parastin û Zanyarî ve hebû."

Li ser Tirkiyê Amnesty International diyar dike ku çendîn ji bo başkirina rewşa mafên mirovan hewildan hatine kirin, "lê hema bêje ti pêşketin pêk nehatine". Amnesty balê dikişîne ser wê yekê ku ta niha mirov hema bêje nikare li dijî polîsan tedbîrên qanûnî pêk bîne, ger ser wan hatibe îsbatkirin ku wan zordarî pêk anîbin. Xaleke din a giring ku ciyê xwe di raportê de digire, pirsa girtin û dadkirina zarokan e. Ew herwiha eşkere dike ku ta niha astengkirinên bikaranîna zimanên netirkî di warên siyasî û giştî de û herweha di dibistanên taybetî de berdewam dikin.

Rêxistina mafên mirovan a navnetewî beşek mezin daye Îranê û eşkere dike ku di sala derbasbûyî de li Îranê bêtirî 5000 kes hatine girtin, ku gelek ji wan hatine îşkencekirin û tê gotin ku hinên wan rastî êrîşên cinsî tên. Di warê darvekirina welatiyên xwe de, Îran di rêza pêşî de ye. Tenê di sala 2009'an de 388 kes hatine darvekirin. Amnesty bi taybetî behsa darvekirina welatiyên Kurd dike ku ji ber endametiya hêzên çekdar rastî vê cezayê hatine.

Amnesty International di raporta xwe de behsa Hikûmeta Sûriyê jî dike û dibêje ew berdewam nerînên berevajî qebûl nake. Li gor Amnesty li Sûriyê rexnegirên rêjîmê, çalakvanên mafên mirovan û kesên din ku wek "dijberên hikûmetê" tên dîtin û xwedî nerînên cuda ne ji nerînên hikûmetê, gelek caran ji bo demên dirêj di zîndanê de diminin. Amnesty eşkere dike ku li Sûriyê gelek kes hene ku bi awayekî nedadmend tên dadkirin. Balkêş e ku piraniya kesên ku Amnesty di raporta xwe de wek goriyên rêjîma Sûriyê bi nav dike, çalakvanên Kurd in.

## Bersiva Asayişên Kurdistanê

Derbarê Rapora Amnesty International, Rêveberê Asayişa Giştî li Hewlêrê, Îsmet Ergoşî, ji Rûdawê re got "Di wê dema ku ew raport behs dike de, me ti kes bêyî razîbûna dadwer negirtiye û me rêya azadiya karê siyasî jî asteng nekiriye. Li hember pirsgirêkên girêdayî çapemeniyê jî, em li gorî talîmatên serokê kabîneya berê ya Hikûmeta Herêma Kurdistanê tevgeriyane, ew talîmat jî ew bûn ku em bi ti awayekî destêwerdanî wan meseleyan nekin, em di wî warî de bi tevahî girêdayî yasayên Herêma Kurdistanê ne ku Yasaya Karê Rojnamevaniyê li Kurdistanê jî yek ji wan e. Ji xwe meseleya ku hin kesên girêdayî Ajansa Parastina Asayişa Herêma Kurdistanê êrişî hin rojnamevanan dikin, em weke teşhîr û bêyî bingeh dibînin. Em xwe weke parêzvanên asayiş û mafên hemû kesên Kurdistanê dizanin."

Rêveberê Asayişa Giştî li Silêmaniyê, Hakim Qadir Hemexan jî beşa rapora rêxistina Amnesty International ya derbarê Herêma Kurdsiatnê wek "çêkirî" wesif kir û da xuyakirin ku ew ê di çend rojên pêş de bi fermî bersiva wê raporê bidin. Hakim Qadir ji Rûdawê re got "Tişta ew dibêjin ji rastiyê dûr e, hêzên asayiş û îstixbaratê li tevahiya Kurdistanê li hemberî hewlên têkdana rewşa aramiyê û ji bo bicihkirina rehetî û aramiyê roleke berbiçav lîstine."

Bizava Sedr:

# Meaşê salane yê xanenişîna Malikî 30 milyon Dolar e

**Ajansên Nûçeyan (Rûdaw)** – Serkirdeyekî bilind ê Bizava Sedr ragihand ku ger Serokwezîr Nûrî Malikî nekarî di postê xwe de bimîne, ji bo kabîneya dahatû ya hikûmetê wê jiyan û ewlekariya wî parastî bin ji ber meaşê salane yê xanenişîniya wî digihe 30 milyon dolaran û hêzek leşkerî jî ku bi lîwayekê tê texmînkirin, bi erka parastina ewlekariya wî radibe.

Berî demekê serkirdeyekî ser bi heman bizavê, Bizava Sedr, ji bo kanala Al –Alem ragihandibû ku di pêşbirkeya diyarkirina berendamê serokayetiya hikûmeta dahatû de: "Malikî ne di pêgehekê de ye ku bikare mercên xwe li ser me ferz bike."

Herçiqasî meaş û dermala berpirsên mezin ên Iraqê û nivîsgehên wan bi awayekî tevahî ne xuya ye, lê li gor daxuyaniya parlamenter Şeza Mûsewî ku di destpêka îsal de ragihandibû, dermala salane ya hersê serokayetiyên komar, parlamen û hikûmetê zêdeyî 800 milyon dolaran e, lê meaşê wan ê parlamenê ne eşkere ye.

Serkirdeyekî Bizava Sedr ku nexwest navê wî bê eşkerekirin, di derbarê meaşê xanenişîna Malikî de got: "Meaşê xanenişîna serokwezîr di salekê de digihe nêzîkî 30 milyon dolaran, herwiha hêzek leşkerî ku bi lîwayek leşkerî tê texmînkirin, ewlekariya wî diparêzin. Ji ber ku Malikî serkirdê fraksiyonek hilbijartî ya parlamenê ye, ger ji bo kabîneya dahatû nikaribe di postê xwe de bimîne ti metirsî li ser tune."

# Gardiyanê Hitler nexweşe

**Rûdaw -** John Demjanjuk di dema şerê cîhanê yê duyemîn de, gardiyanê zîndanîkirina Cuhûyan bû. Di kampên ku tê de Cuhû dihatin kuştin û eşkence kirin, Demjanjuk ku bi eslê xwe Ukraynî ye, berpirsek bû.


John Demjanjuk

Statestîk dibêjin ku di kampa Naziyan ya li Sabibor de ku John Demjanjuk tê de gardiyan bû, 27 hezar û 900 Cuhû hatine kuştin. Demjanjuk ortaxê wê komkujiyê hatibû dîtin, niha jî temenê wî efserê Nazî 90 sale, lê hîn jî di zîndanê de ye û ji sala 2009'an ve ew li Almanya li dadgeheke Eyaleta München tê darizandin.

Beriya çend rojan, ji ber ku di dilê xwe de nexweş bû, Demjanjuk rakirin nexweşxaneyê, nexweşxaneya ku ew lê dimîne jî ne nexweşxaneyeke asayî ye, ew nexweşxaneya zîndanê ye.


Demjanjuk, di dema Naziyan de

Beramber azadkirina Clotid Rice

# Fransa kûjerê Şapur Bextiyar da Îranê

Beriya du hefteyan, Wezîrê Derve yê Fransayê, Bres Ortovo, fermana derkirina Elî Wekîlî Rad ji xaka Fransayê îmze kir, ku bi sedemê tawanbarkirina wî di bûyera kuştina serokwezîrê serdema şahê Îranê, Şapur Bextiyar, de, bi sizaya zîndankirina heta hetayê hatibû mehkûm kirin.

Sala 1994'an dadgeheke Fransî Wekîlî Rad bi kuştina Şapur Bextiyar tawanbar kir. Şapur li mala xwe li Parîsê bi kêran hatibû kuştin. Elî Wekîlî Rad yek bû ji sê kesên ku bi kêran êrîş birin ser Şapur Bextiyar û di encam de Şapur û sekreterê wî yê taybet jî hatin kuştin. Hê herdu kesên din neketine destê polîsan, lê Wekîlî Rad li Swîsreyê hat binçav kirin û Swîsre ew radestî Fransayê kir.

Biryara derkirina Rad ji xaka Fransa pêngava yekem a vegerandina navbirî ji bo Îranê bû. Biryar piştî azadkirina Clotid Rice tê, ku ji aliyê desthilatdarên Îranê ve hat azadkirin. Rice li zanîngeheke Îranê ders didan berî ku par di dema xwepêşandanên li dijî hikûmetê de ji aliyê Hikûmeta Îranê ve wek sîxur hat tometbar kirin. Loma ev deh meh in Clotid girtî ye, lê beriya du hefteyan biryara azadkirina wê hat standin.


Elî Wekîlî Rad

Hikûmeta Fransa red dike ku ji bo azadkirina Rice ti peymanên nehênî ligel Îraniyan kiribe, lê Serkomarê Îranê, Mehmûd Ehmedînijad berê ragihandibû ku wê Rice beramber azadkirina du hevwelatiyên Îranê yên ku li Parisê girtî ne, bê azadkirin.

Di nav hêzên opozîsyon û Îraniyên derve de bi awayekî berfireh tê gumankirin ku kujerên Şapur Bextiyar ser bi dezgehên îstîxbaratî yên Komara Îslamî ya Îranê bûn û bi fermana van dezgehan wan ev karê xwe gihandiye serî.

Şapur Bextiyar yek ji neyarên rêjîma Mihemed Reza Şahê Pehlewî bû, lê di salên dawî yên hikûmeta Şah de û wek hewldaneke bêhêvî ji bo rizgarkirina hikûmeta xwe ji hilweşiyanê, wî Bextiyar wek serokwezîr destnîşan kir. Şapur Bextiyar tenê pênc mehan wek serokwezîr ma û bi xwe îstîfa kir. Ligel serkeftina şoreşa Îslamî di sala 1979'an de, Şapur reviya derve û li Parisê niştecîh bû, heta wê roja ku di mala xwe de bi kêran hat kuştin.

www.arsivakurd.org

